# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

ISSN 2148-5305

9 772148 530008

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 81 07 Kanûn - 13 Kanûn 2015 basnews.com


Wênesaz Qader Ahmed:

## Derdora min bi wêneyan ve hatiye pêçan



R16

Tirkiye û YE di dafika gaza Moskovayê de ne

# RHK'ê alternatîfa Rûsya ye

R02-3-4

Ji ber ku ji sedî 55 pêdiviya xwe ya gaz a xezayî ji Rûsyayê werdigire û li jêr xetera birrîna vê gazê re rû bi rû maye li Enqerê bala her kesî çu ser çavkaniyên gazê yên RHK'ê. Ji ber RHK, bi dewlemendiya rezerwên gaza xwe ku yek ji mezintirîn çavaniyên cîhanê ye, li hember Rûsyayê, ji bo Ewropa û Tirkiyeyê tekane alternatîf e.

Rezerwên tesbîtkirî yê gaza RHK'ê nêzîkî 3 trîlyon çarçikmetre ye. Ji bo ku ev gaz bi ser Tirkiye ve arasteyî Ewropayê bibe bi hendazeyî xebat tên meşandin. Çavdêrên aborî û siyasî diyar dikin ku wê karta gazê destê Hewlêrê jî xurtir bike. Li gor pisporan bi hêza xwe ya sotemeniyê wê aboriya serbixwe ya HRK'ê jî xurt bibe û wê cîhan erênîtir nêzîkî hewla serxwebûna siyasî bibe. Her wiha tê gotin ku wê Rûsya û Îran jî hewl bidin ku pêşî li vê pêvajoyê bigirin.





Mesrûr Barzanî:

## Divê demokrat piştgiriya me bikin

Kesên ku ji demokrasî û pêkvejyanê bawer dikin, divê destê alîkariyê dirêjî Pêşmergeyan bikin.

R05

Lêkolîner Abdulsemed Dawid:

## Li Suriyê heta Derya Spî kurd hene

Li Herêma Laziqiyê û taybet li deverên Çiyayê Kurmênc yê aliyê Laziqiyê hê jî kurd hene û bi kurdî dipeyivin.



R10-11

Şengal

## "Hesabê şaş wê ji Hewlêrê vegere"

R08

## Li ser gorên ermenan daşir tê avakirin

R13

## "Pêşeroja şanoya kurd ronî ye"

R15

# Di gazê de xeta Hewlêrê!



Ji aliyekî ve ji alî F 16'ên Tirkiyeyê ve li ser sînorê Sûriyeyê xistina frokeya Rûs rikberiya Enqere û Moskowê ber bi şerekî sar ve vediguhere, ji alî din ve jî bala her kesî li ser aqûbeta gaza ku Rûsya dide Tirkiyeyê ye. Rûsya piştî ku pêwendiyên aborî yên li gel Tirkiyeyê roj bi roj radiwestîne, di be sedemê tirsa ku gaza dide Tirkiyeyê jî rawestîne.

Ji ber ku ji sedî 55 pêdiviya xwe ya gazê ji Rûsyayê werdigire û Enqere, bi xeteriya birîna vê gazê re rû bi rû ma bala her kesî çu ser çavkaniyên gazê yên RHK'ê. Ji ber dewlemendiya potansiyela gaza xwe ku yek ji mezintirîn herêmên gazê yên dinyayê ye, tê gotin ku li hember Rûsyayê, ji bo Ewropa û Tirkiyeyê tekane alternatîfa gazê ye.

Pispor didine zanîn ku ji bo vê gaza RHK'ê ku tê gotin nêzîkî 3 trîlyon çarçikmetre ye bi ser Tirkiye ve arasteyî Ewropayê bibe bi hendazeyî xebat têne meşandin û li herêmê xebatên lêgerîna gazê ku 9 mehin dom dikin bi serkeftî didomin. Tê ragihandin ku bi hemedemî di navbera RHK'ê, Tirkiye û Ewropayê de xetteke gazê tê sazkirin û Tirkiye li nêzîkî sînorê Yewnanistanê dest bi sazkirina kargeheke depokirin û belavkirina gazê kirî ye. Petro-politkar didine zanîn ku ji ber Tirkiye rêjeyeke mezin a gaza xwe ji Rûsyayê temîn dike, ev ji bo wê xeteriyek e û destnîşan dikin ku di şûna Pêla Şîn ku Rûsya her dem dikare ew bloke bike, projeyên Pêla Hewlêrê ji bo Tirkiye hem bê rîsk e û hem jî erzantir e.

Ji alî din ve ji bo arastekirina gaza RHK'ê ku yek ji baştirîn gazên dinyayê ye, xebatên sazkirina xeta gazê ya ji Hewlêrê heta Ceyhanê destpê kirî ye û tê gotin ku wê ev proje di dawiya 2017 an jî serê 2018'an de bi encam bibe. Li gor pêşbîniyan, li Kurdistanê xebatên derxistin û depokirina gazê, piştî şerê DAIŞ'ê wê hin bi leztir bimeşin û ji bo vê yekê şirketên herî mezin ên dinyayê li ser vê yekê xebatan dimeşînin.

Her wiha, çavdêrên aborî û siyasî diyar dikin ku wê karta gazê destê Hewlêrê xurtir bike, li gor hêza xwe ya gazê wê aboriya wê ya serxwebûnê pêk bû û wê dinya erênîtir nêzîkî hewla serxwebûnê bibe. Her wiha tê gotin ku wê Rûsya û Îran jî hewl bidin ku pêşî li vê pêvajoyê bigirin.

## Hawramî: Pêdiviya me bi dem û sermaye yê heye

Di 7. Lûtkeya Aborî û Enerjiyê ya Konseya Atlantîkê ya ku li Stenbolê hate lidarxistin de Wezîrê Çavkaniyên Srûştî yê RHK'ê Aştî Hawramî bang li kes û derdorên ku di warê aboriya cihanê de xwedî gotin in kir û xwest ku di warê fînansê de piştgirî bidine RHK'ê. Hawramî da zanîn ku ew ê di 2016'an de dest bi hinardekirina gazê bikin û ji bo çavkaniyên RHK'ê bikeve bazara cihanê, bang li welat û şirketên ku pêdiviya wan bi gaz û nefta RHK'ê heye kir ku piştgiriya fînansê bidine RHK'ê. Hawramî di Konferansa Çavkaniyên Siruştî ya Gaz û Nefta RHK'ê ku hefteya çûyî li Londonê pêk hat de jî da zanîn ku RHK'ê ji bo di 2016'an de gaza xwe hinarde bike dest bi reforman kirî ye. Hawramî diyar kir ku armanca wan a yekemîn ew e ku pêdiviya navxweyî ya gazê dabîn bikin û diyar kir piştî ku ew binesaziya hilberîna gazê temam bikin ew ê pêdiviya elektrîk û enerjiyên din ên RHK'ê jî bibersivînin. Hawramî got: "Lê belê qeyrana aborî û şerê bi DAIŞ'ê dibin asteng ku em van projeyan pêk bînin."

Hawramî ragihand ku ji bo reformên wan encam bidin li gel neftê dest bi hinardekirina gazê jî bikin pêdiviya RHK'ê bi dem û fînansê heye. Hawramî diyar kir ku wê RHK'ê şertên peymanên ku bi şirketên neftê re kiriye bi cih bîne û çareserkirina pirsgirêkên Bexda û Hewlêrê wê sûdê li her dû aliyan jî bike. Aştî Hawramî ragihand ku ji salek şûnve wê rojane 20 milyar metrekûp gaz û ji serê salê şûnve jî wê rêjeya derxistina rojane ya neftê ji 500 hezar bermîlî derxînin 1 milyon bermîlî. Hawramî her wiha da zanîn ku ev 9 mehin derxistina gazê dom dike û ev gaza ku hatiye derxistin wê ji bo pêdiviya enerjiya navxweyî bikar bînin. Hawramî di derbarê bi ser Tirkiyeyê ve arastekirina gazê de jî got: "Li Tirkiyeyê binesaziya pêwîst heye. Em ê bi ser Tirkiyeyê ve xwe bigihînin adresên Ewropayê. Gaza me li benda bikarhêneran e. Em hêvî dikin ku saleke din vî wextî ev kar qediyabe."

## Ji bo gazê şirketa hevpar

Tony Haywardê Serokê Genel Energya ku yek ji çalaktirîn şirketên li Herêma Kurdistanê ye jî di konferansê de axivî. Hayward diyar kir ku di nav dû, sê salan de wê gaza kurd arasteyî Tirkiyeyê bibe û got: "Dû sal beriya niha min gotibû ku wê RHK'ê bibe froşkareke grîng a bazara neftê. Wê li herêmê bi giştî 5 trîlyon metrekûp gaz bê keşfkirin. Ev rêje dikare pêdiviya Tirkiye ya 50 salan bibersivîne. Bi ser Tirkiyeyê re arastekirina gaza RHK'ê re wê yekdestiya Rûsya û Îranê ya li ser gazê nemîne û wê Tirkiye pêdiviya gaza xwe erzantir peyda bike. Di 2020'an de wê 20 milyar metrekûp gaz arasteyî bazara Tirkiyeyê bibe.

Hayward da zanîn ku wê şirketeke hevpar a karger bê sazkirin û dom kir: "Ev şirket wê modêla çêker-karkir-dewrkeriyê kar bike. Bi frotina gazê re wê fînansa wê bê destpêkirin. Em ê bi modêleke ku me ji hevkarên xwe yên navneteweyî û Tirkiyeyê stendiye fînansê dabîn bikin. Em pêşbîn dikin ku di sala nû de bê damezirandin. Yekem gaz wê di nav dû salan de biherike.

## Li ser sînorê Yewnanistanê navenda gazê

Hate ragihandin ku li herêma Dedeağaça nêzîkî sînorê Yewnanistanê xebatên Projeya Pergala Gaza Serbixwe ku demek e dom dike hatiye ber qedandinê. Bi vê ûnîteyê re tê plankirin ku salane 6 milyar metrekûp gaz bê dabînkirin û 170 hezar metrekûp gaza ronkirî bê depokirin. Tê ragihandin ku di xebatên vê projeya ku bi razameniyeke teknolojiya pêşketî tê meşandin de pêşketin hene, xebatên fîzîbîlîteyê jî bi encam bûne û tê payîn ku di demeke nêz de xebatên îhalekirina wê jî bêne destpêkirin.

Serokê Yekîtiya Aboriya Enerjiyê ya Navneteweyî(IAEE) Prof. Dr. Gürkan Kumbaroğlu diyar kir ku egerî heye ev navenda gazê ya ku ji bo gaza ku ji Rûsya û Azerbaycanê hatiye plankirin, di demên pêş de ji bo gaza Herêma Kurdistanê, ya Rojhilatê Deryaspî û ya Îranê jî bê bikaranîn.

## Xeta Hewlêr û Ceyhanê

Serokê Komîsyona Neftê ya Parlamena Kurdîstanê Şêrko Cewdet destnîşan kir ku bi potansiyela 3 trilyon metrekûpan RHK'e, dikare pêdiviya gaza 70 salan a Ewropayê bibersivîne û got ku ew dikarin vê bi lêkolînan jî derxin holê. Cewdet got ew xwedî rezerva gaza herî başin. Di derbarê mijarêde Şêrko Cewdet bi BasNuçeyê re axivî û destnişan kir ku ji bo derxistina gazê ew bi şirketen mezin ên gazê re ji bo lihevkirinan hevditinan pêk tînin û da zanîn ku hin şirket li Herama Kurdîstanê xebatên xwe dimeşînin, ji ber şerê DAIŞ'ê karê derxistinê dereng ketiye, lê ji ber qeyrana aborî mezintir bûye divê RHK van xebatan bi lez pêk bîne. Cewdet anî ziman ku xeta gazê ya di navbera Hewlêr û Ceyhanê de pir girîng e û diyar kir ku ger ev proje bê pirsgirêk pêk bê, wê di dawiya sala 2017'yan an jî di serê sala 2018'an de bi dawî bibe. Cewdet got: "Ji niha ve em nizanin ew ê çiqas gaz bê pompekirin. Ev bi performansa şirketên ku vê binesaziyê çêdikin ve grêdayîye."

Cewdet anî ziman ku weke li Ûkraynayê jî hate dîtin, ew ê Rusya arastekirina gaza kurd a bi ser Tirkiye yê ve gihandina Ewropayê nerazî be û ji ber vê yekê wê pêkanîna vê projeyê ne hêsan be. Cewdet got: "Li gel vê yekê jî, hem ji bo Tirkiyek û hem ji bo Ewropayê veguhestina gaza kurd pir girîng e û RHK'ê li benda hevkariyê ye." Di derbarê Konferansa Neft û Gaza Herêma Kurdistanê ya ku li Londonê pêk hat de jî Cewdet wiha axivî: "Ev konferans salê carekê pêk tê û armanca wê teşwîqkirina şirketên mezin yên li Kurdîstanê kar dikin e. Ji bo pêdiviyên gel yên gaz û enerjiyê bêne bicîhkirin li Herêma Kurdîstanê divê binesaziyeke qewî bê sazkirin."



## Ew ê Tehran û Bexda li dij derkevin

Pispor û akademîsyenên ku di derbarê peywendiyên Tirkiyê û RHK'ê de ji Bas Nûçe'yê re axivîn dan zanîn ku eger serçaviyên RHK'ê ji bo Tirkiyê bê hinartin ew ê ji bo her du aliyan gelekî baş be û egara wê yekê jî heye ku Tirkiye dev ji gaza sirûştî ya Rûsyayê berde. Her wiha tê zanîn ku Tirkiye hewl dide gaza RHK'ê bistîne lê belê li hember serbixwbûna wê ye. Akademîsyenê Zankoya Fatihê Prof. Dr. Doğu Ergil eşkere kir ku Tirkiye gelekî dixwaze gaza Herêma Kurdistanê bistîne lê belê Tirkiye di heman demê de li hember serbixwebûna Kurdistanê ye. Her wiha Ergil ragihand ku her çend Tirkiye ji îstîfadeya gaza Herêma Kurdistanê kêfxweş jî be ew di haman demê de naxwaze Kurdistan serxwebûna aborî bi dest bixe û dûrî Bexdayê bikeve û Tirkiye dizane ku serçaviyên xwezayî yên Kurdistanê ew ê rê li ber serxwebûna Kurdistanê vekin. Ergil wiha berdewma kir: "Eger wisa berdewam bike û rageşiya heyî zêde bibe baweriya wê bi Îranê jî nayê û dixwaze bi Qeterê re li hev bike. Lêbelê ji ber ku hatina gaza ji Qeter ji ber ku ew ê gelekî bi mesref be ew ê hewl bide ku ji Herêma Kurdistanê bistîne. Rastiya vê yekê jî ew ê Tirkiye tûşî dîtîna rastiyan bike û Tirkiye naxwaze liv ê yekê rast were û nakokiyeke bi vî rengî bi Tirkiyê re heye."

Her wiha Ergîl got ku di mijara pêwistiya gaza kurdan de alternetîfên Ewrupa, ji alternatîfên Tirkiyeyê zêdetirin û Ewrupa ji mîna Tirkiyeyê raste rast di dijî Rûsyayê dernakeve ber ku hem Rûsya naxwaze di bazara Ewrupa de derkeve û hem jê Ewrupa naxwaze di bazara Rûsyayê de derkeve. Ji ber vê yêkê rewşa Tirkiyeyê xeteretire û diwê bi awayekî lezgînî bê çareser kirin. Lê dîsa jî ji bo pêşerojê gaza Kurdan bala Ewrupayê dikêşe. Lê di firotina gaza kurdan jî ew ê pirsgirêk hebin. Ji ber ku Herêma Kurdistanê ji bêyî Bexdayê nikara petrol û gazê bifiroşe. Wek hûn jî dizanin Herêma Kurdistanê û Tirkiyeyê peymana petrole îmze kirin lê Washington dijî vê peymanê derket û qebûl nekir. Her wiha Tehran jî dê dijî vê bazarê derkeve. Ji bo ku Herêma Kurdistanê bikare petrola xwe û gaza xwe li gorî sere xwe bifiroşe, pêwiste di serî de DYA`yê qanîh bike. Lê eger Ewrupa daxwaza gaza Kurdistanê bike û li ser vê daxwazê bandorê li DYA`yê bike ew ê demê mimkune ku gaza Kurdistanê bi destê rêvebertiya Kurdistanê bê firotin û ew a jî di siyasetekî hûr û demekî dirêj dixwaze.

## RHK'ê leystikvanê nû yê enerjiyê ye

RHK li derbarê petrol û gazê de projeyên bi balkêş di tîne rojevê. Dr Azad Sadoom ê zanîngeha Newroz`ê li ser vê mijarê raporek amade kiriye û dibêje ku ew ê petrola Kurdistanê bi gehe 108 mîlyar dolaran. Îro jî Herêma Kurdistanê bayê 10 mîlyar dolaran petrole di firoşe. Li gorî dr. Sdoom ew ê 6 salan de Kurdistan qasî 6 kattir dê mezin bibe. Dê Kurdistan ji aliyê Sosyo aborî de îaxekî zêrîn bijî. Li gorî rapora USC`ê li RHK`ê 50 mîlyar bermîlên petrole heye û 3 tirîlyon metrkûp jî gaz heye. Eger Kurdistan wê yekê bi karbîne dê Kurdistan bibe lîstokvanê enejîyê yê nû.

Li Tirkiyeyê di salê de 40 mîlyar metrekêpe gazû û 6 mîlyar metrekêpe jî LNG`ê xerc dike. Tê idîa kirin ku gaza RHK`ê têra 300 salan ji Tirkiyeyê heye. Her wiha tê zanîn ku bi RHK'ê bi tena serê xwe dikare 300 salan bi tena serê xwe dikare gaza Tirkiyê dabîn bike. Li gel wê yekê jî hin pêngavên nû yên rêkeftinên nefte yên bi Tirkiyê re tene kirin. Tê zanîn ku ew ê di çarçoveya wê yekê de ew ê ji RHK'ê nefta xam bê stendin û kel û perên ji nefte tên çêkirin jî ji bo Kurdistanê bişîne.

Serokê Desteya Îcrayê ya Genel Energy Plc'ê ji Mehmet Sepil jî bal kişand ser wê yekê ku ew ê serdemeke nû li herêmê dest pê bike. Tê zanîn ku ji sala 2002'an heta niha Genel Energy Plc li RHK'ê kar dike. Mehmet Sepil bal kişand ser wê proseya nû û wiha axivî: "RHK'ê ji bilî zêdekirina daxwazan ew ê parastina ewlekariya kar jî ji bo me dabîn bike û ev yek dê bihayê gazê jî bixe. Tê gotin ku di salên pêş de ew ê ji RHK'ê ji bo Tirkiyê 30 milyar metrekûp gaza sirûştî bê şandin."



# Gaza HRK'ê alternatîf e


Harun Öztürkler


Süleyman Yaşar


Turgay Türker


Yaşar Taşkın


Veysel Ayhan


Muhsin Kar


Mehmet Altan

**Prof. Dr. Harun Öztürkler: Eger Îran qanî wê pirsgirêk derkevin**

Ozturkler amaje bi wê yekê kir ku Iraqê de potansiyela 200 mîlyar dolaran heye û pêwistiya Iraqê 200 mîlyar dolar e. Ozturkler wiha domand: "Veberhên divê serî de di sektora enrjiyê de bin. Divê di vî warî de her salê 10 mîlyar dolar bê xerckirin. Pirsgireka DAIŞ`ê heye, piraniya Iraqê di destê DAIŞ`ê deye. Eger kî em heqê Bexdayê jî bidin ew êwexti tu pirsgirêk dernakevin. Lê eger kî em heqê Bexdayê nedin ew ê wextî Bexda û Herêma Kurdistanê têk biçin.

**Aborînas Rojnamevan Süleyman Yaşar: RHK dikara bibe alternatîf**

Aborînas Süleyman Yaşar bal kişand rezervên neft û gaza Herêma Kurdistanê û tekez kir ku piştî qeyrana Rûsya û Tirkiyê RHK'ê dikare di warê aboriyê de bibe alternatî û wiha got: "Ji berê de hatibû gotin ku rezervên Başurê Kurdistan gelek zêde e. Ev yek jî rewşeke wisa derdixîne holê ku rewşe Tirkiyê rehet bibe. Mimkûne ku muhtacbûna Tirkiyê ji Rûsyayê re kêm bike. Di derbarê enerjiyê de muhtacbûna yek çavkaniyê rîskên herê mezin derdixîne holê. Tirkiye heya vê rojê ku muhtacê Rûsyayê bûye rîskekê gelek mezin hildaye ser xwe. Ger ku Rûsya gaza li ser Tirkiyeyê bide sekinandin, dê Tirkiye di demekê kin de bikeve rewşeke dijwar. Evrûpa ji berî de di vê mijarê de Tirkieyî şiyar kirîbû. Lê belê Tirkiyê guh nedayê. Tirkiye niha sedê 68-70 gaza xwezayî ji Rûsyayê distîne. Di pîşesaziyê de di xetên avakirina enerjiyê de Trkiye muhtacê Rusyayê ye. Gaz a xwezayî ku Tirkiye ji Başurê Kurdistanê bistîne, dê tirkiyeyê rehet bike. Dema ku em vê destekekê wek aborî bifikirin, dibe ku di rêya serxwebûnê de bibe çavkaniyekê. Lê belê gelek welatên derdorê de dibe ku vê nexweze û li hemberê vê bisekine. Piyasayên cîhanê dibe ku tevgerekê serbixwe nexweze. Lewre ku welatên derdorê hemû bazirganiya petrolê dikin û reqîbên nû dê bihayê petrolê kêm bike. Ev rewş ne li gorê berjewendiyên welatên din be dibe ku qebûl nekin. Di cihanê de gelek welat mijara enerjiyê de muhtacê dervenin. DYA û piyasayên cîhanê reqîbekê nû nexwezin. Hin welatên ku ji bo mijara gaza xwezayî û petrolê de hin hêzên ku serxwebûna vê herêmê bixwezin hene yên nexwezin li hember sekinin jî helbet dê bibe.

**Rojnameger Aborînas Turgay Türker: Neft û gaza RHK'ê gelekî giring e**

Serokê Saziya Rojnamegerên Aboriyê Turgay Türker jî da zanîn ku neft û gaza herêma Kurdistanê div an demên dawiyê de gelekî derketine pêş û eger RHK'ê qeyrana bi Bexdayê re çareser bike ew ê di warê enejiyê de bêhtir derkeve pêş û wiha berdewam kir: "Nîqaşên firotina petrola Kurdistanê li ser Tirkiyê ji berê de pêk dihat. Wextê ambargoya Îranê de jî ev nîqaş çêbibûn. Wextê gengeşiyên Hikûmeta Iraqê û Herêma Kurdistanê jî nîqaşekê wiha hebû. Tê gotin ku li Herêma Kurdistanê rezerva gazê heye. Li gorê min dê Tirkiye vê bistîne. Lê belê her çiqasî em dibêjin ew ê gaza Kurdistanê bibe alternatîf jî pirsgirekên wê gazê jî gelek in. Wateya vê gelekî giring û mezin e. Eger em gaza cîranê xwe yê ji berderiye xwe bikirin ew ê hem erzantir be û ew ê hem jî kêm risktir be. Cihe kî nêzîkê me ye, mesrefa vê kêm e. Ev tiştekî gelekî girnge. Gaza Kurdistanê gelekî giring e."

**Rojnemevan Aborînas Yaşar Taşkın:**

Rojnameger û aborînas Yaşar Taşkın ji amaje bi wê yekê kir k udi demên dawiyê de RHK'ê êdî bi neft û gaza xwe tê rojeva cihanê û egera wê yekê heye ku weke alternatîfeke din dereke û wiha domand: "Ev demekî dirêje li ser vê mesele gotibêj tên kirin. Peymanek ji bo 50 salan jî hatîye îmze kirin. Pîştî qeyrana Sûriyeyê zêdetir li ser vê mijarê mijûl dibin. Tirkiye ji bo gazê girêdayî derveye û eger gaza ji Kurdistanê bigehê Tirkiyeyê ew ê ev girêdayîbûna ji derve ji holê rabe. Em sedî 75 li alîyê gazê de girêdayê Îran û Rûsyayê ne. Kurdistan dê bibe alternatîfek ji bo Tirkiye. Helbet petrol û gaza Kurdistanê ji bo Tirkiyê erzantir û nêzîktir e. Petrola Kurdistanê ji bo Tirkiyê watedare jî. Eger pirsgirekên di navbera Hikûmeta Bexdayê û Herêma Kurdistanê de heyî çareser bibin ew ê Kurdistan bibe alternatîfeke giring a herêmê."

**Serokê IMPR Veysel Ayhan: Peywendiyên dîplomatîk ewê tesîrê li gazê jî bikin**

Her wiha Serokê Navenda Lêkolînên Aştiyê yên Rojhilata Navîn Veysel Ayhan jî amaje bi wê yekê kir ku ew ê danûstendinên dîplomatîk tesîrê li neft û enerjî û gazê jî bikin û wiha domand: "Niha mixabin gaza xwezayî ya Kurdistanê nayê bikaranîn. Ji ber kêmasiya teknolojiyê, û ji ber barkirin û bazirganiya wê pirsgirek hene. Bi wî qeyrana dawî de, barkirina gaza xwezayî ya Kurdistanê li bazirganiya Tirkiyeyê re mijara axaftinêye. Û di derbarê barkirina petrol û gaza xwezayî de tekiliyên ciddî bi şirketên navnetewî re hebûn. Ji berê de hin peyman jî pêk hatibûn. Lewre ku wek bazirganiyî lê dinêrin. Ji ber vê yekê helbet çavkaniyên enerjiyê yên Kurdistanê derdikevin pêş. Dema em di derbarê zêdekirina cûreyan lê binêrin, Kurdistan, herêmekê ku him hêsan bê barkirin û him jî ewledar xuya dike. Ji ber vê sedemê dê têkilî geş bibin. Di vir de jî beramberê pirgirêkên din dimînin. Pozîsyona Bexdayê, polîtîkayên girtî yên DYA û YA'yê di derbarê îhraçkirina enerjiya Kurdistanê de polîtîkayên wan vekirî nînin. Gereke di vê xalê de jî nermbûn çêbibe. Taybetî jî gereke DYA di derbarê petrola kurdan de gotinên pozîtif, bi raya giştî ya navnetewî re bikarbîne. Ger ku ev bên pêkhatin, wê demê Herêma Kurdistanê ciddî ciddî dikare bibe alternatifa Rûsyayê. Yanî ji 2017'an de di vê wateyê de dibe ku em têkiliyekê gelek ciddî bibînin. Di petrolê de ev têkilî jixwe heye. Em dikarin bêjin ku dê gaza xwezayî de jî wiha bibe. Peymanên xeta gaza xwezayî hatine pêk anîn. Qeyrana Rûssyayê dê pêkanîna wê bilez bike."

**Prof. Dr. Muhsin Kar: Divê peywendiyên Tirkiyê û RHK'ê bêne geşkirin**

Akademîsyenên Zanîngeha Necmettîn Erbakan Muhsîn Kar jî bal kişan şîrove û nûçeyên li ser medyayê yên di derbarê HRK'ê û Tirkiyê de û da zanîn ku divê di warê enerjiye de pêyewendî bêne geşkirin û wiha berdewam kir: "Helbet, têkiliyên qada siyasi û aborî yên bi aşûrê Kurdistanê re ji bo menfaetê her dû aliyan jî pêwistin. Rêkeftinek di wî warî de bêçêkirin dê vê cihetiyê zede bike. Rewşa xwe ya heyî bidomîne dibe ku bibe çavkaniyek bi îstiqrar. Lê em nizanin ka wê aliyê PKK`ê çawa bê minîmîlîzekirin. Him kûrewî him jî di alîyê aboriyê de di nav têkiliyên baş de ne. Ew, wê hêsabûneke alternatîf pêk bîne. Di têkiliyên navnetewî de dewlet hin deman li heman aliyî dinêrin, hin deman jî li aliyên cûda dinêrin. Ji ber vê yekê dema bi yekê re pirsgirêkek derket, ji yên din re derfeta xwestina neft û enerjiyê derdikeve holê. Minak li Tirkiyeyê hilberiya karebayê, bi rêjeyek mezin ji neftê tê dabîn kirin. Ez pêşniyara nuklerê jî dikim. Ez di wê baweriyê de me ku Ji bo cûrbicûriya enerjiyê nûkleer jî giring e."

**Aborînas Prof. Dr. Mehmet Altan: Ew ê kurd bi bandor bin**

Aborînas û akademîsyen Mehmet Altan jî eşkere bi wê yekê kir ku polîtîkaya Tirkiyê ya derve têkçûye û Tirkiye ketiye rewşeke nebaş. Di berdewamiya axaftina xwe jî de Altan bal kişand ser siyaseta navxweyî ya Tirkiyê û peywendiyên wê yên bi kurdan jî re û wiha berdewam kir: Ji ber vê yekê Tirkiye him polîtîkayên xwe yê ku hatiya xalekê derasayî û him jî muhtacbûna enerjiyê ve ev polîtîkayên xwe yê li der aqil ve di hindir de dixweze berdewama faşîzmê bike û dengê hemû kesê qut bike. Tabloyekê wiha de desthilatdariya mevcût de, mirov nizane xewnên an jî peymanên wan bijî. Ev xala em hatine tê de, pêkanîna van biryaran gelek gumandar e. Ji ber vê yekê wek hin pêymanan dike xuya bike jî mirov nizane sibê dê çi bibe. Ev desthilatdariya sîyasî bi DAİŞ'ê re nêztir xuya dike. Kurdan re bi mesafe ye. Heta dijmin e. Lê, ku analîza rewşa sedsala 21'an baş bê kirin û bibînin dînamîkên pêşerojê yê herêmê xuya dike ku kurd in. Di herêmê de gelek hêzekê bi bandor in Ji ber vê yekê derSthilatdariya ku kurdên hemwelatiyê xwe wek dijmin dibîne nikare van pêşketinan bixwîne. Helwesta nêzikatiya sunî misilman Tirkiyeyê anî xalekê gelek tarî."



Serdana Kendavê

# Ji bo Barzanî protokola bala!

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, di serdana xwe ya kendavê de li Riyadê li Qesra Mîriyetê ji alî Mîr Salman bin Ebdulezîz ve hate pêşwazîkirin. Hate ragihandin ku Salman soza piştgiriya aborî daye Barzanî û daye zanîn ku wê Siûdî li Hewlêrê balyozxane veke. Angaşt tê kirin ku Siûdiyên ku wek aliyeke ku piştgirî dide DAIŞ'ê têne zanîn, piştî serkeftina kurdan wê helwesteke cûda nîşan bide.



Piştî serkeftina Şengalê, di gere xwe ya welatên kendavê de Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) Mesûd Barzanî ji alî serokdewletan ve bi protololeke bala û samîmî hate pêşwazîkirin. Barzanî piştî serdana Emîratên Yekitiya Ereb (EYE) derbasî Erebîstana Siûd bû, bi Mîrê nû Salman re civiya û soza alîkariyê jê stend. Hate ragihandin ku di vê hevdîtina ku li Qesra Mîriyetê ya li Riyadê pêk hatiye de Barzanî soza piştgiriya darayî ji Salman stendiye û Siûdiyan jî diyar kirine ku ew ê di demeke nêz de li Hewlêrê balyozxane vekin. Angaşt tê kirin ku Siûdiyên ku wek dewleteke ku piştgirî dide DAIŞ'ê tê nirxandin, piştî serkeftina kurdan a Şengalê wê di derbarê kurdan de helwesteke cûda nîşan bide. Barzaniyê ku ji alî gellek neferên malbata Mîriyetê ve bi germî hate pêşwazîkirin. Hate ragihandin ku Mîr Selman grîngiyeke taybet daye Barzanî û wî şibandiye Selahedînê Eyubî û ji ber vê yekê jî ew ê nîşaneyeke taybet pêşkêşî wî bike. Ev yek bi sedemê nirxandinên ku pêwendiyên Riyad û Hewlêrê derbasî qonaxeke nû dibe.

Çavdêrên siyasî didine zanîn ku Erebistana Siûdî, piştî ku DAIŞ ji bin kontrola wê derket û bi ser Îranê ve ji alî Hûsiyên Yemenê ve li Yemenê hate astengkirin, Siûdî bêçar maye ku xwe nêzîkî Kürdên sunne bike. Piştî ku eniya şîa, li Rojhilata Navîn şîayên ku li welatên ereb dijîn li dij rejimên ereb sor kir, Riyad destteng bû. Çavdêrên siyasî didine zanîn ku ji ber vê yekê rayedarên siûdî jî li hember vê astengdariyê hewl didin ku li dij eniya şîa piştgirî bidine kurdan an jî qet nebe pozisyona xwe ya dij-kurd biguherînin.

**Fûad Huseyn: Wê Siûdî li Hewlêrê balyozxane veke**

Serokê RHK'ê Mesud Barzani di serdana welatên kendavê de pêşî serdana EYE'yê kir û li vir bi Pêşmîrê Abû Dabî û Serfermandarê EYE'yê Mihemmed bîn Zeyd El Nahyan re hevdîtin pêk anî. Di civînê de geşedana pêwendiyên navbera aliyan û şerê heremê hate niqaşkirin. Hate ragihandin ku di civînê de rewşa heremê û ji bo RHK'ê piştgiriya EYE'yê ya leşkerî û aborî hatiye gotûbêjkirin.

Piştî serdana EYE'yê Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî derbasî Riyadê bû, li vir ji alî Mîr Salman ve hate pêşwazîkirin û ji Erebîstana Siûdî alikariya aborî xwest. Di derbarê serdana Barzanî ya ku Rawêjkarê Encûmena Asayîşa Giştî ya RHK'ê Mesrûr Barzanî û pisporên siyasî û leşkerî ji beşdar bûn de Serokê Diwana Serokatiyê ya RHK'ê Fûad Masûm daxuyand ku Mîrê Erebistana Siûdi Salman bin Ebdulezîz ragihandiye ku ew ê di navbera dû hefteyan de li Bexdayê balyozxane vekin, piştî demekê wê li Hewlêrê jî balyozxane vekin û ew ê alîkariya darayî bidine RHK'ê.

Şêwirmendê Serokatîya HRK'ê Kîfah Mehmûd, di nirxandina xwe ya serdana Barzanî ya kendavê de anî ziman ku RHK'ê şanî hemû dinyayê daye ku li bejahiyê hêza ku dikare li dij DAIŞ'ê şerekî serkeftî bimeşîne ew e û got: "Di vê tekoşînê de Erebistana Siûdî roleke grîng leyîst û serdana Barzanî ya Siûdî, ji alî tekoşîna li dij DAIŞ'ê ve jî pir grîng e."

Mehmûd di derbarê detayên serdanê de jî van agahiyan da: "Di hevdîtina li Riyadê de ji bilî babeta terorê, geşedana pêwendiyên navbera Hewlêr û Riyad û bi taybetî jî babeta şirketên Neftê yên Siûdî ku li Herêma Kurdistanê kar dikin hatin gotûbêjkirin." Mehmûd diyar kir ku serdana Riyadê, ji bo berjewendiyên dû aliyan û bi taybetî ji bo bergirî û îstiqrara Herêma Kurdistanê pir grîng bûye.

**Seîd Memûzînî: Bi saya Şengalê dîplomasiya kendavê serkeftî bû**

Berpirsê PDK'ê yê Mûsilê Seîd Memûzînî diyar kir ku ji alî welatên kendavê ku bi piştgiriya DAIŞ'ê têne tometbarkirinbi protokoleke bala pêşwazîkirina Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî peyameke grîng dane RHK'ê û cîhanê û anî ziman ku ev bi saya serketina Şengalê û destpêkirina qonaxa têkçûna DAIŞ'ê pêk hatiye. Memûzînî ku di derbarê serdana Barzanî ya kendavê, qeyrana aborî ya RHK'ê û babetên din de pirsên BasNûçe'yê bersivand. Memûzînî riyar kir ku Erebistana Siûdî hêzeke mezin a herêmê ye û di siyaseta dinyayê de jî xwedî gotin e û ji ber vê peşwaziya protokoleke bala diyar dibe ku hevsengiya herêmê guheriye û êdî kurd şayanî grîngiyê têne dîtin. Memûzînî wiha peyivî: "

Berjewendiyên gelê kurd çipêwîst bike wê Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî teqez wî bike. Wê RHK'ê bi siyaseteke yek alî xwe sînordar neke û wê siyaseteke piralî ku dikare bi herkesî re diyalog û hevkariyê bigeşîne bi rêve bibe. Ji bo kurdan rêbaza herî sûdwer ev e."

Memûzînî diyar kir ku ev serdan di raya giştî ya ereb de jî wek serkeftina RHK'ê û Barzanî hatiye nirxandin û anî ziman ku ev yek ji bo piştgiriyên aborî û geşkirina pêwendiyên dîplomatîk ên dewletên ereb jî bandoreke erênî bike. Memûzînî got: "Ev nirxandinên di raya giştî ya ereb de têne kirin vê yekê didin xuyakirin; Iraq, li gel ku dewlete jî, ji ber şiyana Hêzên Pêşmerge ya li dij DAIŞ'ê di bin siya Herêma Kurdistanê de maye û hemû welatên cîhanê li gor vê yekê helwestên xwe diyar dikin. Es bandora serkeftina leşkerî ya li ser siyasetê ye."

**"Wê qeyran bi vê siyasetê çareser bibin"**

Seîd Memûzînî anî ziman ku DAIŞ di qonaxa têkçûnê de ye û ev yek bi saya Hêzên Pêşmerge pêk hatiye û her kes vê yekê dizane. Li ser gotina Parlamentê YNK'ê Goran Azad a ku 'Deynê RHK'ê ji 15 milyar dolarî zêdetir bûye û çareseriya vê qeyranê hin zortir bûye.' jî Seîd Memûzînî ragihand ku li gel vê qeyrana siyasî û aborî Şingalê hatiye rizgarkirin. Ev yek dide xuyakirin ku bi siyaseteke rasyonel RHK'ê dikare bi hêsanî vê qeyranê çareser bike. Memûzînî di derbarê şer û leşkerşandina DYA û Almanya de jî wiha peyivî: "Leşker şandin bêguman erênî ye, Lê belê ji ber lawaziya Artêşa Iraqê bû sedem ku DAIŞ derbên mezin nexwe. Ger ku Mûsil grêdayî RHK'ê bûya, niha Hêzên Pêşmerge Mûsilê rizgar kiribûn jî. Lê belê di vê babetê de erka herî mezin a hikûmeta Iraqê û artêşa wê ye. Ji ber lawaziya artêşa Iraqê Pêşmerge jî bandoreke neyênî stend. Li gel her tiştî hatina leşkerên dewletên Ewropa û DYA' pêngaveke erênî ye."

Li ser pirsa me ya 'Wê operasyona Mûsilê kîngê destpê bike?' jî Memûzînî da zanîn ku ew niha 10 kîlometre ji Mûsilê dûre û wiha dom kir: "Di navbera Berpirsên Hêzên Pêşmerge, Hêzên Amerîka yên bejahiyê, Hêzên Hewayî yên Hevpeymaniya Navneteweyî û Artêşa Iraqê de civîn pêk hatin; Lê belê Artêşa Iraqê ragihand ku ji bo vê operasyonê ew ne amade ye. Ji ber vê yekê ez di demeke nêz de pêkhatina vê operasyonê pêkan nabînim."

## Mesrûr Barzanî: Yên bawerî bi demokrasiyê tînin divê alîkariya Pêşmerge bikin

Rawejkarê Asayîşa Giştî ya RHK'ê Mesrûr Barzanî ku di şerê li dij DAIŞ'ê de bala dinyayê dikêşîne, di didariyek li gel televîzyana Norwecî TV 2'yê de ragihand ku nabe barê şerê DAIŞ'ê tenê li ser milên gelê herêmê be, di serî de Norwêc, divê hemû alî û dewletên ku bawerî bi demokrasiyê tînin alîkariya RHK'ê bikin û piştgiriyê bidine Hêzên Pêşmerge. Barzanî da zanîn ku Hêzên Pêşmerge, di şerê li dij DAIŞ'ê de hêza herî bi bandor e û ji hikûmeta Norwêcê, ji bo Hêzên Pêşmerge bêtir alîkarî xwest. Barzanî bi bir xist ku di axaftina xwe ya civîna lijneya Neteweyên Yekbûyî (NY) ya sala çûyî de jî aniye ziman ku DAIŞ, ne tenê ji bo heremê ji bo hemû cîhanê gef e û ger ku DAIŞ hebûna xwe ya li heremê berdewam bike, wê çalakiyên terorê pêkbîne û got: "Bi êrîşa Parîsê re gotinên min rast derketin."

Barzanî wiha axivî: "DAIŞ ji berê ve planên van êrîşan dike. Lewra DAIŞ, hebûna xwe li heremê berdewam bike wê çalakiyên terorê pêk bîne û ev gef wê li her deverê cîhanê belav bibe. Ji ber vê yekê divê DAIŞ li herêmê bê şkandin." Di derbarê rêbazên têkbirina DAIŞ'ê de jî Barzanî wiha dom kir: "Tekez wê DAIŞ têk biçe. Lê pirsgirêk ev e; Wê çawa têk biçe? Dê û bav, hevjîn û zarokên her Pêşmergeyên di enîyan de şer dikin hene. Hûn leşkerên xwe çawa dibînin divê hûn Pêşmergeyan jî wisa bibînin. Ji ber vê yekê divê hûn destê alîkariyê dirêjî Pêşmerge bikin. Kesên ku ji demokrasî û pêkvejyanê bawer dikin, divê destê alîkariyê dirêjî Pêşmergeyan. Ev şer tenê li ser gelê herêmê nayê meşandin. Siberoja DAIŞ'ê tune ye, lê belê bi vî awayî jî temenê wê drêj dibe û êrîşên terorî yên wek Parîsê didomîne.

# Li hemû deverê şer, li hemû derê penaberî

**Mehmed Salih Batırhan**



Di sala 2012'an de şerê Sûryeyê yê navxweyî dest pêkiribû bi hevsengiyên nû û îtifakên nû ve di dome. Li Sûriyeyê rageşiyên serî de bi çalakiyên muxalifan dest pê kirî bû û niha jî bi şerê mezhebi û bi rageşiyên aktorên herêmê ve didome. Di meha tîrmeha 2014`an de DYA`yê bi êrîşên esmanî dest bi bombebaranê li çeperên komên îslamê yên tundrew kiribû û aliyek din jî di qada şerê gerim de alîkariya çek û perwerdeya leşkerî dike ji bo hêzên muxalif yên di dijî rejîmê şer dikin. DYA'yê û çeperê Koalîsyona Navdewletî li Sûriyeyê li aliyekî warên leşkeri ava dike li aliyek din jî leşkerên xwe dişênin. Li aliyekî din jî Rûsya Îran bi stratejyên leşkerî ji bo rejîmê mîna mertalan hereket dikin. Li rexeke din jî Îranê ji bo Sûrîyeyê balefirûn nû şandin û heman deme de jî Rûsyayê li Tartus`ê û Hûmûs`ê wargehên nû yên leşkeri ava kirin. Mîhwera Îran û Rûsyayê ve xuya dike ew ê rageşiya li ser pirsgireka Sûryeyê geştir bike. Her wiha gengeşiya di navbera Tirkiye û Rûsyayê ya li ser balefira li aliyê Tirkiyeyê ve hatî xistin jî didome

Aliyek din jî endamên NATO`yê û mutefîkên DYA`yê yên qedîm Almanya û îngîltereyê jî biryar girtin ku leşkerên xwe bi şînin qada şer a li Sûriyeyê. Piştî biryar girtina parlementoya îngîltereyê, Artêşa Îngîltere ya esmanî dest bi êrîşên li dijê DAIŞ`ê kir û Almnyayê jî biryar girt ku 1.200 leşkerên xwe bişîne li Sûriyeyê. Hêzên kurd jî ev demek dirêje amadekariyên xwe dike ku operasyona Cerablusê û Reqqayê dest pê bike û aliyek din jî şerê hêzên kurd yê li dijê tundrewên îslamî jî berdevam dike. Li herêma Cizîrê hêzên kurd her diçe çeteyên tundrew paş de direvîne û aliyek din jî li Helebê çeteyên tundrew êrîşê li taxa şêx Meqsûd û herêmên kurdan yên li derdorê dikin û şerê vê derê jî her diçe dijwartir dibe. Ji ber şerê li herêma Lazkiyê û Çiyayê kurdan gelê kurd yê li vê herêmê li gorî agahiyan koçber bûye û herêm di bin bombebaranê deye.

**Sinorê Rojava- Tirkiyê di rojeva Moskovayê deye**

Li aliyek din jiî pêşniyara Tirkiyeyê ya avakirina ``herêma tanpon`` hêj tê nîgaş kirin. Li ser van nîgaşan Wezîrê Derve yê Rûsyayê Sergey Lavrov da xuya kirin ku pêwistî li ewletiya sinorê Tirkiye-Rojava heye û kurd ew ê bikarin alîkariya ewletiyê li sinorê Tirkiyê bikin. Di sere vê heftê de Serokê DYA`yê Barach Obama û Serokê Rûsyayê Vladimir Putîn li Parîsê bi hev re civiyan. Di derbarê civînê de Lavrov daxuyanî da û anî zimên ku Obama û Putîn li ser sinorê Tirkiyê û Rojava gotîbêj kirine. Di derbarê mijarê de Lavrov got ku qasê ku ez tê gihiştim DYA`yê û koalîsyonê banga girtina sinori li Tirkiyê kiribûn lê ez bawerim ku Tirkiye tenê ser xwe nikare vî sinorî bigire. Di rexekî din jî idîayên rayedarên Rûsî yên li derbarê Tirkiyê ku petrola DAIŞ`ê dikirin jî didomin û Rusyayê derheqê van idîayan de hinek dîmen û vêne jî di çapemeniyê re parvekirin û anî ziman ku dê Rûsya van dîmenan pêşkêşî çapemeniya dinyayê û NY bike.

**Gelo Rûsyayê 5 ton çek danî PYD`ê?**

Piştî midaxeleya Rûsyayê ya li Sûriyeyê, qada şer a li Sûryê berfirehtir bû û bi erdî xistina balefira Rûsyayê a ji aliyê Artêşa Tirkiyeyê re jî kete rojeva siyaseta nadewletî. Li gorî Komiteya Koardîsyona Mehelî ya Sûriyê, li bakûrê Helebê ji aliyê balefirên Rûsyayê re 5 ton çek bi rêya esmanî gihiştin destê PYD`ê. Komîteya Koardînasyona Mehelî a Sûriyê da xuyakirin ku ji aliyê firokeyên kargoyê yên Rûsyayê re 5 ton çek li bakurê Helebê teslîmê PYD`ê bûn. Fermandara YPG'ê ya li herêmêm Nesrin Abdullah, idîayên ku 5 ton çek ji aliyê Rûsyayê re hatîne, derevand. Abdullah, anî ziman ku êrîşên li ser taxa Şêx Meqsûd yên li aliyê El Nusra, Ehrar el-Şam û hêzên din jî didomin û diyar kir ku ev êrîş li alîkariya Tirkiyeyê dibin.

**Putîn: Ew ê Tirkiye poşman bibe**

Gengeşiya navbera Tirkiye û Rûsyayê ya li ser erdî xistina balafira Rûsyayê didome. Di hevdîtinên her dû aliyan jî gengeşiyên navbera wan de nerm nebûn û Serokê Rûsyayê Putînê di axiftina xwe a Banga Netewî de diyar kir ku ew ê danekirinên bazirganiyê hêj jî hişktir bikin. Putîn li ser mijarê wiha got:`` Ew ê Tirkiye poşman bibe``. Serokê Rusyayê deng li endamên Konseya Federasyona Kremlînê, Endamên Dumayê, Valiyan û saziyên civakî kir. Di axiftina xwe de behsa balefira ji aliyê Tirkiyê re hatî xwarê kir. Putîn û wiha axivî: "Em ketina balefira xwe ya ji aliyê Tirkiyê re hatî xwarê ji bîr nakin. Em alîkariya Tirkiyê ya ji bo terorîstan piştguh nakin. Tirkiye ew ê bi van kirinên xwe poşman bibe. Yên ku dibêjin Rûsya heta dawiyê nikare bazirganiya ji Tirkiyê qut bike di nava aşopan de ne. Eger Tirkiye bi fikire ku em ê tenê geştyarî û karên avahîsaziyê astenk bikin ev jî xeyal e û em ê her ji alî de têkiliyên xwe yên aborî ji Tirkiyê qut bikin û hemû dinya jî ew ê bibîne. Sînor li hember kiryarên me tûnene."

Piştî DYA'yê, Rûsya û Fransayê Înglîtereyê jî dest bi êrîşên li dijî DAIŞ`ê kir. Piştî parlementoya Îngîltereyê biryara tev li bûna êrîşên li dijî DAIŞ`ê girt, Artêşa Îngîltereyê ya esmanî jî dest bi êrîşa çeperên DAIŞ`ê yên li Rojava û Sûriyeyê kir. Piştî biryar girtina parlementoya Îngîltereyê destûra êrîşan li dijê DAIŞ`ê dide, balefirên Îngîltereyê li balefirgeha Kibrisê ya Îngîlîzî hereket kirin û çeperên DAIŞ`ê bombebaran kirin.

**Times: Rûsya li Sûryeyê wargeha xwe ya dûyem ava dike**

Rojnameya Înglîzî Tîmesê, nivîsand ku Rûsya li Sûryeyê wargeha xwe ya dûyem avadike. Li gorî rojnamêyê, Rûsyayê li Hûmûsê wargeheke leşkerî ava kiriye û di nava vê heftê de leşker û akîpmanên leşkeran tên bi cihkirin. Di nûçeyê de hat nivîsandin ku balfirgeha El Şayrat di xizmeta Rûyayê deye û firokeyên Rûsyayê bere jî ev balefirgehe bi kartanîn lê bele heyamek beriya niha leşkerên nû hatin balefirgehê û ev balefirgehe ji bo wargehê piçûk dîtîn û ji ber vê yêkê dest bi avakirina wargehek din kirin. Çavkaniyên li herêmê ji rojnameyêre axivîn û diyar kirin ku li balefirgehê de 50 yan jî 60 leşkerên Rusî hene û ji bo wan lojman tê çêkirin. Aliyek din jî hinek leşkerên Rûsî di derdora Hûmûsê de di mînin. Her wiha li balefirgehê qasî 10 balefir ew ê 15 jî firoke hene. Aliyek din ji hat zanîn ku ê Rûsya mejmara balefiran bike 20 û dê nav de hêzên teybet jî qasî 1000 leşker bên li Sûryeyê. Balefirgeha El Şayratê 45 hangarên balefiran hene û ewletiya van jî başe.

Li Çiyayê Kurd yê di nêzîkê Bajarê Laziqiyê li Sûriyê şerekî dijwar didome. Li gorî çavkaniyên li herêmê, kurdên di herêmê de dijin di bin bombebaran Artêşa Sûriyêye dene. Ev bû heftêyek ku Artêşa Rûsya li ser çeperên Ahrar el Şam û El Nusrayê yên li Çiyayê Kurdan de girtiye. Rojnamevanê ji herêmê Bas Nûçeyê re axivî û diyar kir ku şer di herêmên başûrê Çiyayê Kurdan li Nebî Yûnis, Cib El Ehmar û Burc El Kessabê de berdevam dike.



**Îngîltere daket qadê**

Piştî DYA'yê, Rûsya û Fransayê Înglîtereyê jî dest bi êrîşên li dijî DAIŞ`ê kir. Piştî parlementoya Îngîltereyê biryara tev li bûna êrîşên li dijî DAIŞ`ê girt, Artêşa Îngîltereyê ya esmanî jî dest bi êrîşa çeperên DAIŞ`ê yên li Rojava û Sûriyeyê kir. Piştî biryar girtina parlementoya Îngîltereyê destûra êrîşan li dijê DAIŞ`ê dide, balefirên Îngîltereyê li balefirgeha Kibrisê ya Îngîlîzî hereket kirin û çeperên DAIŞ`ê bombebaran kirin. Piştê bombebaranê balefir bê zîyan vegeriyan li balefirgehê. ji sala par heta niha koalîsyona navdewletî êrîşan li çeperên DAIŞ`ê dike û sala îsal di serî de Fransa û Rûsya û niha jî Îngîltere tev li van êrîşan bû. Li gorî agahîyan 8 balefirên Îngîlîzî tev li operasyonan dibin û hat zanîn ku ew ê Îngîltere fîloya xwe ya li Sûriyê berfirehtir bike.

**Almanya 1.200 leşkeran dişîne**

Îngîltere û li aliyek din ji ew ê Almanya jî dest bi oprasyonan bike û hat zanîn ku ew ê Alamanya beriya 2016`an de ew ê ji Sûriyeyê û Rojava re balefirên keşfe Tornodo, keştekê, balefirên nefte û 1.200 leşkeran bişîn e. Biryara şandina leşkerên Almanyayê pişte civîna Serokwezîrê Almanayayê Angela Merkel û Wezîrê Bergiriyê yê Almanayayê Ursula Von Der Leyen hatiye girtin. Birayara Serokwezîr Merkel ew ê di vê heftê Parlementoyê de bê nîqaş kirin û li gorî çapemeniyê dê parlemento biryarê erê bike. Wek tê zanîn, piştî paytextê Fransayê Parîs di rastî êrîşa terorî hatî, Serokkomarê Fransayê Firançoîs Hollande bang li DYA'yê, Îngîltere, Almanya, Îtalya û Rûsyayê kiribû ku dijî terora DAIŞ`ê bi hev re hereket bikin. Tê tehmîn kirin ku ew ê qismek leşker li Rojava bi cih bibin.

**DAIŞ cebilxane li ku û çawa distîne?**

DAIŞ ev e bû 3 sal li Iraqê û Sûryeyê hikimraniya xwe ava kirî û êrîşan li Herêma Kurdistanê dike. Niha jî tê lêpirsîn ku DAIŞ çawa cebilxane dikire û çawa debara xwe dike. Rojnameya Îngîlîzî Financial Times di derbarê vê mijarê de dosyayek teybet amade kiriye. Rojname, lêkolînê li ser aborî û cebilxaneya DAIŞ`ê dike ku cebilxane li ku û çawa tê. Li gorî nûçeya di rojnamê de qaçaxçiyê çekan Ebu Alî wextê ji aliyê DAIŞ`ê ve hatî girtin hizir kiri bû ku ew ê bê kuştin. Lêbele wextê Ebu Elî kaxiza kirin di dêstê wî de xwend di matmayî ma. Kaxizê de nivîsî bû ku ev kese li ser navê DAIŞ`ê dikare hemû şiklan danûstandina çekan bike. Li ser kaxizê jî mohra Musilê hebû. DAIŞ wextê herêmên xwe de kolberiyan di gire hîç tiştekî nîne serê van, ji bilî zirarê bîne sere wan, rola wan bilind dinirxîne û rêzê ji wan re digre. Bazirganên çekan di vî şikli dikevin nava têkiliyên DAIŞ`û yên tev li hev û bi vî şikli danûstandina çekan ji bo DAIŞ`ê dikin. Ebu Elî navê xwe yê kod bi karanî û anî ziman ku ji bo DAIŞ`ê "mîna dînan çek tên, sibe êvar, nîvro" DAIŞ`ê cihên di dest danî ser jî bi bûhaya sedan mîlyar dolaran çek jî gihandin destê xwe. DAIŞ di dinyayê de rêxistina terorîstî ya herî mezin û devlemend e. Di destî DAIŞ`ê de cûre bi cûre çek hene. Di nava van çekane de çekên DYA`yê bigirin heta yên Almanî, Înglîzî, Îsraîlî heta Firansayê, çekên hemû dewlwetan di destê wan de hene. Ebu Elî diyar kir ku ew çekan li Iraqê, Sûriyeyê, hemû kesan dikirin. Çi tişt di xema DAIŞ`ê de nîne, tenê çek hebin li ku bin bila lê bin ew ê bikarin bikirin. Ji bo DAIŞ`ê çavkaniyên herî girin yên çekan dijminên DAIŞ`ê ne. Komên alîgirî Esadê çekên di destê xwe de yên zede dimînin difiroşin û DAIŞ jî van çekan dikire. DAIŞ bi rêya Whatsaap`ê têkiliyan bi komên çekên xwe firoşin re çêdike. Ebu Elî anî ziman ku çek di sinorê Tirkiyeyê de derbasî Sûriyeyê dibin û ev faaliyet her roj tê kirin.

**Li Çiyayê Kurd şerê dijwar**

Li Çiyayê Kurd yê di nêzîkê Bajarê Laziqiyê li Sûriyê şerekî dijwar didome. Li gorî çavkaniyên li herêmê, kurdên di herêmê de dijin di bin bombebaran Artêşa Sûriyêye dene. Ev bû heftêyek ku Artêşa Rûsya li ser çeperên Ahrar el Şam û El Nusrayê yên li Çiyayê Kurdan de girtiye. Rojnamevanê ji herêmê Bas Nûçeyê re axivî û diyar kir ku şer di herêmên başûrê Çiyayê Kurdan li Nebî Yûnis, Cib El Ehmar û Burc El Kessabê de berdevam dike. Mihemed Bîlal da zanîn ku gundên kurdan yên li herêmê jî ji ber şerê di herêmê de di dome gelek zirar dîtine û piraniya gelê herêmê koçber bûne. Li herêma Çiyayê Kurdan de 65 gundên kurdan hene û 80 hezar kur dli vê herêmê dijin. Ji aliyek din jî çere di navbera YPG`ê û çeteyên tundrew yên ku li ser Taxa Şêx Meqsûd re êrîşên hovane dikin jî di dome.

# Hesabê şaş wê ji Hewlêrê vegere

Nîqaşên kantonbûn, rêveberiya xweser ên ku piştî dagirtina DAIŞ'ê li ser Şengalê destpêkirin, piştî rizgarkirina wê jî didomin. Dûşema çûyî piştî ku Komên nêzîkî PKK'ê, bi ser navê Meclîsa Avadankirinê ya Ezdi ya Şengalê daxuyand ku wan li Şengalê 'Xweserî' ragihandiye, ev nîqaşen li ser Şengalê gihîştin qonaxeke awarte. Rayedarên siyasî û leşkerî yên RHK'ê dan zanîn ku ev yek nayê qebûlkirin, ew ê re nedin ku tiştek wiha pêk bê û wê ev hesab ji Hewlêrê vegere. Rayedarên PKK'ê jî diyar kirin ku ew ne di nav vê pêkhatinê de ne, lê belê ew alîgir in ku li her deveran rêveberiyên xweser bêne ragihandin.

Ji aliyekî ve li Şengalê ev nîqaş têne kirin ji aliyê din ve DYA û Almanya ji bo şerê li dij DAIŞ'ê leşker dişînin herêmê. Her wiha êvara Îniyê kanala asmanî ya tirk CNN Türk'ê angaşt ku nûçeya ku Artêşa Tirk yekineyên leşkerî yên nû şandiye Başika navçeya Mûsilê ku bi salan e 100 leşkerên tirk li wê kampê bi cih bûne. Pişti ku ev nûçe di ajansan de belav bû Fermandarê Hêzên Pêşmerge yê Eniya Başik Arif Yasîn vê nûçeyê derew nîşan da û da zanîn ku tu yekîneyeke Artêşa Tirk ji bo vê herêmê nehatiye arastekirin.



**Memûzînî: Şengal xaka RHK'ê ye**

Piştî ku komên nêzîkî PKK'ê yên li Şengalê bi ser navê Meclîsa Avadankirinê ya Ezdi daxuyandin ku wan li Şengalê 'Xweserî' ragihandiye, ji rayedarên RHK'ê bertek hatin nîşandan. Di derbarê vê babetê de Berpirsê Mûsilê yê PDK'ê Seîd Memûzînî ji BasNûçe'yê re ragihand ku Şengal xaka Rêveberiya Herêma Kurdistanê(RHK) ye, hêrêmên ku PKK dikare li serê hukmê xwe bike Bakurê Kurdistanê yan jî Rojava ye, lê belê wek sazûmaneke fermî ya siyasî RHK'ê, xwedî xaka Şengalê ye û ev hesabên xweseriyê yên ku bi ser van koman têne meşandin wê ji Hewlêrê vegerin. Memûzînî got: "Brayên me yên ku di demên dijwar de hatin alîkariyê û li gel Pêşmerge mil bi mil li dij dijminan şer kirin divê vê hevkariyê wek fersend bikar nehanîna. Li qadê, di navbera şervanên PKK'ê û Pêşmerge de tu pirsgirêk tune ne, lê belê ji ber ku êdî Şengal hatiye azadkirin, a baş ew e ku PKK hêzên xwe ji herêmê vekêşîne." Memûzînî da zanîn ku ew biryarên vê Meclîsê pir grîng nahesibînin, ger ku me grîndî dabûyayê wê ji berpirsyarên bala bersivên pêwîst hatibûna dayîn û wê ragihandibûna ku ew ê vê yekê qebûl nekin.

**Endamê KCK'ê Zekî Şengalî:**

Meclis ne giredayî me ye, wê biryar daye

Endamê Lijneya Rêvebir a KCK'ê Zekî Şengalî jî ji BasNûçe'yê re axivî û da zanîn ku Meclîsa Avadanê ya Ezdî ji alî kesên ku li Şengalê rastî zilm û zorê hatine û azar kêşane ve hatiye damezirandin û vê meclîsê ji bo pergala rêvebirina xwe pêk bine van biryaran stendine. Şengalî diyar kir ku her çiqas ew biryarên vê meclîsê erênî pêşwazî bikin jî tu pêwendiyeke wan bi vê meclîsê re tune ye. Zekî Şengalî anî ziman ku li her deverên Kurdistanê çi hewldanên xwebirêvebirinê rû bidin em ê piştgirî bidine wan û diyar kir ev mesele dikare bi diyalogê bê çareserkirin. Şengalî destnîşan kir ku ji destpêkê ve, ne PKK'ê û ne jî meclîsa ku niha hatiye avakirin negotine ku ew ê li Şengalê kanton ava bikin, lê belê ji alî hin dezgehên çapemeniyê ve hatiye xwestin ku di navbera RHK'ê û PKK'ê de pirsgirêkên xeyalî û çêkirî pêk bên û ji ber vê rola neyênî ya çapemeniyê xuya xuya bûye ku pirsgirêkên mezin hene. Şengalî got: "Lê belê li qada şer di navbera Pêşmerge û Gerîlla de tu pirsgirêk tune ne. Her çiqas navenda Şengalê hatibe rizgarkirin ji nêzîkî 20 gundên Şengalê hê jî di destê DAIŞ'ê dene. Heta ku li gel van gundan, Tilefel, Beycî û Misûl neyên rizgarkirin, wê bi xeteriya êrîşan re rû bi rû be."

**Ahmed Gerdî:**
**Çawa em ji Kobanê vegeriyan divê PKK jî ji Şengalê vekişe**

Di derbarê geşedanan de Fermandarê Yekîneyên Pêşmerge yên ku di dema êrîşên DAIŞ'ê de çûne hawara Kobanê Ahmed Gerdî jî ji BasNûçe'yê re axivî. Gerdî hanî ziman ku beriya rizgarkirinê, berpirsên PKK'ê daxuyandine ku piştî rizgarkirinê ew ê hêzên xwe ji Şengalê vekişînin, lê hê ji venekişandine û ev dibe cihê nerazîbûnan. Gerdî, pêwîst dît ku hemû alî û hêzên kurd li gor berjewendiyên gelê kurd tevbigerin û siyaset bimeşînin û got: "Ev helwesta PKK'ê sûdê li gelê kurd jî nake û li wê jî nake. Herêma Kurdistanê pergaleke fermî ya siyasî ye û Şengal perçeyek ji xaka wê ye. Ji ber vê yekê divê PKK hurmetê şanî RHK'ê bide û li gor vê rastiyê siyaset bimeşîne."

**Pêşmerge: Artêşa Tirk nehatiye Başikê**

Piştî ku Berdevkê Rêxistina Heşdî Wetani ya girêdayî Wezareta Parastinê ya Iraqê Mehmûd Sûçî di malpera Şefeqnewsê de angaşt ku Tirkiye, ji bo piştgiriya operasyona Mûsilê 1200 leşkerên xwe şandiye Kampa Başika navçeya Musilê ku ji berê ve 100 leşkerên tirk tê de bûn. Piştî ku ev daxuyaniya Sûçî ji alî medya ya tîrk ve jî hate belavkirin, berê rojeva Tirkiyeyê guherî. Ev agahî bi eşkerekirina Peşmerge derew hate derxistin. Fermandarê Hêzên Pêşmerge yê Başikê Behram Arif di derbarê vê babetê de daxuyand ku ev nûçe bi bingeh û derew in, tu hêz an jî yekîneyên Artêşa Tirk nehatine Başikê. Piştî vê daxuyaniyê rayedarên tirk jî ragihandin ku wan biryar stendiye ku ji ber xeteriya DAIŞ'ê hejmara 100 leşkerên xwe yên li kampa Başikê bikin 150 û ji ber ku di kêliya guhertina peywirê 100 leşkeran de hejmara leşkeran gihîştiye 250, ev şaştêgihîştinî pêk hatiye.



**Almanya û DYA leşker dişînin herêmê**

Piştî ku diyar bû ku ji bilî Pêşmerge û Hêzên Kurd ne Artêşa Iraqê û ne jî ya Sûriyeyê nikarin DAIŞ'ê têk bibin û her wiha piştî erîşên li Parîsê welatên Rojavayî bizivîn û li dij DAIŞ'ê dest bi hewldanên nû kirin. Piştî ku Frensa û Îngilîstanê li Sûriyeyê jî dest bi êrîşên asmanî kirin DYA û Almanya jî biryar dan ku leşker bişînin herêmê.

Wezîrê Parastinê yê DYA'yê Ashton Carter da zanîn ku di çarçoveya havkariya li gel hikûmeta Iraqê, wê DYA, ji bo perwerdekirin û sazkirina hemahengiya navbera Hêzên Pêşmerge û Artêşa Iraqê ew ê 200 leşkerên xwe bişinin Iraqê. Di axaftina xwe ya li Lijneya Xizmetên Çekdarî ya Meclîsa Nûneran de Carter da zanîn ku ev Hêzên Taybet yên ku ew ê bişînin Iraqê, li gel erkên xwe yên ku hatine destnîşankirin, her wiha ew ê xebat û çalakiyên wek; Rizgarkirina dîlên di dest DAIŞ'ê de, bidestxistina serkirdeyên DAIŞ'ê, berhevkirina daneyên îstixbariyê û li Sûriyeyê pêkanîna operasyonên taybet jî pêk bînin. Piştî vê biryara DYA'yê Rêveberiya Bexdayê û hin komên şîa bertek hatin nîşan dan û dan zanîn ku ew ê van Hêzên Taybet ên DYA'yê weke dijmin bibînin. Serokwezîrê Iraqê Haydar Ebadî her çiqas bide daxuyakirin ku li Iraqê pêdiviya wan bi hêzeke wiha tune ye jî, hin berpirsên Amerîkî ku navên xwe negotine ji Reutersê re ragihandin ku beriya ev biryar bê stendin Bexdayê hatibû agahdarkirin.

**Almanya pîştgîrê serxwebûna Kurdistanê ye?**

Ji alî din ve Almanya jî di çarçoveya tekoşîna li dij DAIŞ'ê de 1200 leşker dişîne Rojava. Piştî êrîşên Parîsê ku Frensa ji Almanyayê alîkarî xwest, Hikûmeta Alman sêşema çûyî piştî biryara Encûmena Wezîran ku 1200 leşker bişîne Sûriyeyê pêşkêşî parlamenê kir û parlamenê bi rayên Partiyên Yekîtiya Xirîstiyan CDU û CSU û Partiya Demokrata Civakî SPD'ê, li dij 146 rayan bi 445 rayan vê biryarê pesend kir. Li gor vê biryarê wê Almanya 6 Frokeyên Tornado yên keşfê, frokeyeke dangerî ku wê dikaribe li hewa sotemenî transfer bike, Peykeke leşkerî, û li gel firkateyneke ku wê parastina Keştiya frokeyan Degol a Frensa bike 1200 leşker bişîne Sûriyeyê. Piştî vê biryara Almanya, daxuyaniyeke grîng jî ji alî Wezîra Parastinê Von der Leyen ve hate dayîn. Wezîra Alman Leyen di daxuyaniyeke xwe de da zanîn ku 5 hezar û 500 Pêşmerge ji alî Artêşa Almanyayê ve hatine perwerdekirin. Di vê daxuyaniyê de li ser pirsa, 'Ragihandina serxwebûna Kurdistanê wê di siberojê de ziyanê bide hewlên aştiyê?' got: "Em li herêmê aştî û aramiyê dixwazin, lê belê em nizanin ku ew ê encamen çawa derkevin hole. Di navbera me û RHK'ê de hevbaweriyek pêk hat. Ez bawer nakim ku ev yek ziyan bibîne."





# Zerdeştîye cêrena ra Başûrê Kurdîstanî



Hezar serran ra dime, bawerîya zerdeştan cêrena ra Kurdîstan. Goreyê Wezaretê Dînî yê Hewlêrî ra, bitaybetî Silêmanîye de endamê zerdeştîye benê zêde. Coka pêşnîyaza wezaretî ya ke sey dîno resmî bêro qebul kerdene û zerdeştî besebikerê îbadetxaneyanê xo virazê.

Nurî Şerîfî serra 2006 Ewropa de Dezgehê Zerdeştan nabî ro. Aşma adare de dezgehî îlan kerdbî ke cêreno ra Kurdîstan. Aşma nîsane Konseya Berz a Zerdeştan Kurdîstanê Başûrî de saz bîye. Tevgero ke Îran û Hindîstan de kî aktîf o, vano ke Kurdîstanê Başûrî de 100.000 zerdeştî estê. Şerîfî ra gore no yew reaksîyonê verba şidetê terorîstanê "Dewleta Îslamî" (DÎ) yo. "DÎ ma rê tena merdene û şidet ard. Zordarîya miletî kerda. Nika wext wextê qederê ma yo", Şerîf rojnameyê Rûdawî ra va.

Şerîfî ra gore plan beno ke Silêmanî de yew merkez rabibo. Heta ewro şaristananê Herêmede semînerî ameyî dayene. Şerîfî ra gore hûmara beşdaran berze bîye. "Bi se hezaran eleqeya xo musnaye û na hûmare bena zêdîye. Tayê kurdî wazenê racêrê kokê xo." Nika konseye paweno ke hukmat ra destûr bêro dayene. O ra dime zerdeştî wazenê îbadetxaneyanê xo rabikerê: "ateşgeh", yanî "adirgeh". Dînê zerdeştan de adir cayêde pîroz cêno.

No taw grûba zerdeştan kultur de eleqedar benê. Şerîfî ra gore tayê hemwelatîyî pê qayîl nêbîyê ke rêxistinanê îslamî ra teber yewna rêxistina dînî karê xo Kurdîstan de biramo, la zerdeştî ancîya karê xo eşkera kenê. "Kurdîstan de dewrê nimiteyîye êdî vîyarta. Ma rîayetê heq û huqûqî kenîme. Eke qanûn hetkarîya ma keno, ma hêvîdar îme ke ma kî bipawo. Heqê pêro dîn û bawerîyan esto ke şar îbadetê xo pê bikero. Ma qerarê xo da. Beno ke DÎ û dormeyê ey ma kişenê. La kiştiş ra teber wijdan û hîkmetê înan çin o. Tersê ma çin o. Ma zanenîme ke zafêrîya kurdan musluman ê. Labelê ma bawer kenîme ke ma besekenîme pîya aştîye de biciwîyîme."



**Zerdeştî kam ê?**

Bawermendê zerdeştîye îbadetê Zerdeştî kenê. Bi îhtîmalêde pîl Zerdeşt ÎV seserra 6. de ciwîya. Şerîf ra gore Zerdeşt "hetê Heqî ra nêame rusnayene. O bi xo heyat û dinya ser o fikirîya. Zerdeşt merdimêde kamil bîyo. Seba mi pêxamberêk o, la o felsefeyê xo ano dinya. Kitabê Zerdeştî, Avesta de fikrê ey yenê pêser. Se hebî persê ke ey derheqê Heq, cu, dîn û dinya de pers kerdo. Vateyê Homayî nîyê, la yê însanî yê. Tewr verênan ra yew Zerdeşt bîyo ke vato 'Tena yew Homa esto', Ahura Mazda, xeliqnayoxê heyatî." Şerîf bi xo bawer keno Zerdaşt kurd bîyo. Çi esto ke derheqê ey de zaf çîyî nênê zanayene. Kurdan bawer kenê ke Zerdeşt Kurdîstanê Rojhelatî Wirmê (Ûrmîye) de amebîyo dinya û 77serrîya xo de yew lej de merdo.

# Îbadetxaneyo êzîdîyên Gurcîstan



Kurdanê êzîdîyan îbadetxaneyêde newe paytetê Gurcîstanî Tiflîs de kerd ra. Dîzaynê îbadetxaneyê neweyî de formê gelêrî û modernî pîya gurênîyayê.Dorê 2.000 hezarî meymanî amebîyî merasîmê rakerdişî, tede bextwaştoxê Şengalî kî estbîyî. Na reya verên a ke Tiflîs de êzîdîyî yew îbadetxane kenê ra. Îbadetxane merkezê kulturî yê Tiflîsî de bi nameyê "Sultan Êzîd"î ame viraştene. Laleş û yew perestgehê Armenîstanî ra dime, no îbadetxaneyo hîrêyin ê êzîdîyan o ke yeno viraştene.

"Yew serserr a ke kurdê êzîdîyî Gurcîstan de ciwîyenê û Heq şikir ke nika îmkanê înan esto ke yew ca bêrê têlewe û pîya îbadetê xo bikerê, ziwanê xo biwanê, wa kulturê xo vîndî nêkerê", Malxaz Songulaşvîlî, papazê gurcî ke beşdarê merasîmî bî, va. Wezîrê Têduştîya Hemwelatîyan ê Gurcîstanî Paata Zakareîşvîlî no derheq de va, "Kurdê êzîdîyî parçeyê komelê Gurcîstanî yê û nê fealîyetî seba ma pêrune zaf muhîm ê. Ma bawer kenîme ke no merkezê kulturî do hîna zaf îmkanan bido kurdanê êzîdîyan ke dînê xo yê kanî û ziwan û kulturê xo yê rindekî biseveknê."

Nufusê êzîdîyan ê Gurcîstanî 1990 ra bi nat semedê ekonomîya welatî ra bîbî kêmî, la rîyê cengê duştê terorîstanê DAÎŞ de ancîya hûmara bextwaştoxan bîye zêdîye. Serra 1989 de 33.331 êzîdîyî Gurcîstan de ciwîyayêne, 2002 de na hûmare bîye 20.843. Ewro texmînan ra gore da-6.000 kurdê êzîdîyî Gurcîstan de weşîya xo ramenê.



### Lêkolîner Abdulsemed Dawid:

# Li Suriyê heta Derya Spî kurd hene

Di vê serdema ku fersendeke dîrokî hatiye ber deriyê kurdan de li gel cudahiyên ramanî û hewldanên şaş jî kurdan gellek tişt bi dest xistin. Li Rojava, kurdan li gel êş û azarên mezin gellek destkeftiyan bi dest xistin. Niha armanca siyaseta kurd piştî Kerkûkê, xwegihandina Derya Spî ye. Siyasiyên kurd vê daxwazê neyînin ziman jî kurd di nav xwe de nîqaşa vê yekê dikin. Lêkolîner û Siyasetmedar Abdulsemed Dawid da zanîn ku li pişt Çiyayê Kurmênc û derdorên Lazqiyeyê hê jî gundên kurdan hene û cî bi cî parastina gundên xwe dikin. Dawid, di derbarê vê babetê û dîroka sed salên dawî ya Rojava de agahiyên xwe bi me re parve kir.

**Kalê Badî**

Piştî ku serhildana Şêx Seîd şikest û hin kes, malbat û hozên kurd ji bêçarî koçî Rojava kirin, rejima Sûriyeyê ya wê demê ku jixwe ji kurdan aciziyan dikir, vê yekê ji bo xwe wek egera guhertina demografyaya Rojava dît. Digot; Kurd ne şêniyên Sûriyeyê ne, ji Tirkiyeyê koçî Sûriyeyê kirine û axa ereban dagir kirine. Dewleta Sûriyeyê bi vê egerê dest bi hewldanên erebkirina Rojava kir û yekem car di sala 1933'yan de li Herêma Cizîrê yekem gundê ereb ava kir. Piştî pêvajoya yekbûna Sûriye û Misirê hewldanên avakirina Kemberên ereb destpê kirin.

Siyasetmedar û Lêkolînerê Rojavayî Abdulsemed Dawid dide zanîn ku di lêkolînên wî yên li herêmên Lazkiye û deverên ku di navbera Efrînê û Derya Spî de hê jî kurd gellek in û hêjî bi kurdî diaxivin. Abdulsemed Dawid ku bi mebesta beşdarî semînera xwe ya ji alî Şaxa Amedê ya Weqfa Îsmaîl Beşîkçî bibe hat Amedê û me jî derfet dît ku di derbarê dîrokçeya Rojavayê Kurdistanê de pê re hevpeyvînekê pêk bînin.

Di destpêka sedsala çûyî de demografyaya Rojava çawa bû?

Heta şerê cîhanê yê yekem ji Rojava'ya ku em îro qala wê dikin bêtir axa kurdan hebû û ev ax heta Derya Spî jî diçû. Piştî şerê cîhanê yê yekem ku axa Sûriyeyê kete destê Frensiyan, bi hevkariya Frensî û ereban pêvajoya qewirandina kurdan a ji axa wan destpe kir. Li dû vê pêvajoyê piştî ku Frensî ji Sûriyeyê vekişiyan û di sala 1946'an de dewleta Sûriyeyê hate damezirandin, nijadperestiya ereban jî gurrtir bû û êdî êrîşên projeyî yên li dij kurdan destpê kirin. Hozên ereb ku yek ji wan hoza Şemmer e, hanîn di Rojava de bi cih kirin. Paşê jî projeyên kembera ereb destpêkirin. Li gor vê projeyê wê hemû demografyaya Rojava bihata guhertin û wê Rojava bibûya warekî ereb. Polîtîkayên kemberî hatin destpêkirin û li ser sînorê Sûriye û Tirkiyeyê yê aliyê herêma Cizîrê kemberek ereb hate sazkirin.

## "Kembera navbera Rojava û Başûr pêk nehat"

**Armanca kembera ereb çi bû?**

Wekî herkes dizane armanca vê hewldanê astengkirina pêwendiya navbera Rojava û Bakur e; Lê belê armanc ne tenê ev bû. Li gel avakirina kembera navbera Rojava û Başûr, her wiha dihate xwestin ku li ser sînorê Herêma Cizîrê û Başûrê Kurdistanê jî kembereke ereb bê sazkirin. Weke tê zanîn di destpêka sedsala çûyî de, di frawaniya nexşeya Rojavayê Kurdistanê de hejmara şêniyên ereb pir kêm bû. Li herêma Efrîn û Kobanê mirov dikare bêje qet tune bûn. Li Cizîrê kêmek ereb hebûn, lê belê ew ereb jî koçer bûn. Ji ber ku dewletên serdest ên wek Sûriye, Tikiye, Iraq û Îran li ser çi babetê nîqaşan bikirina jî li ser meseleya mafê kurdan bi hemahengî hevpeyman bûn, dixwestin ku pêwendiya navbera perçeyên Kurdistanê jî asteng bikin. Armanca kembera ereb ya mezin ew bû ku demografyaya xetên sînor ên navbera perçeyên Kurdistanê bi tevahî biguherînin û demografyaya hemû Rojava biguherînin. Bi vê mebestê gellek kurdên Rojava mişextî herêmên ereb bûn û gellek malbat û hozên ereb jî hanîn û di Rojava de bi cih kirin.Heta 1974'an pêvajoya kembera ereb ya ku armanca wê jihevcûdakirina Rojava û Bakur bû temam bû. Lê qonaxa dûyem ya ku wê Başûr û Rojava ji hev veqetanda bi ser neket.

**Çima bi ser neket?**

Ji ber ku Rejima Şamê di sala 1975'an de kete Lubnanê û di sala 1979'an de muxalefeta Îxwanî Muslumîn xurt bû û li dij rejimê serî hilda, rejîm bi wan re mijûl bû. Tevgera Îxwan di wê demê de xeteriyeke mezin bû ji bo rejîma Baas. Di vê pêvajoyê de li Şamê pirsgirêkên hukumraniyê destpê kirin û ji ber vê yekê ev armanca wan bi ser neket. Piştî tevlîheviya dema ku Misir û Sûriye bûbûn yek dewlet û şûnde, ketina Lubnanê û serhildana Îxwan tevlîheviyeke mezintir çêkir. Bi saya vê tevlîheviya ku li gellek deverên Sûriyeyê belav bû taqeta Sûriyeyê ya ku li ser sînorê Rojava û Başûr jî kemberek ereb saz bike nema. Lewre di vê pêvajoyê de, ger ku li dij kurdan jî dest bi vê hewldanê kiribûya, egereya ku rejîma Esad têk biçe peyda dibû. Ji ber vê yekê rejîmê berê xwe neda kurdan da ku di dû eniyan de şer neke.

**Projeya vê kembera ku dihate xwestin di navbera Başûr û Rojava de bê sazkirin çawa bû.**

Di projeya vê kemberê de dihate xwestin ku seranserê sînorê Rojava û Başûrê Kurdistanê, ji aliyê Sûriyeyê yan jî Cizîrê ve nêzîkî 20 kîlometre bi frehî herêmeke tampon a ku wê ereb tê de bihatina bicihkirin saz bikin. Li gor vê projeyê, piştî ku ev kembera 20 kîlometre freh bi encam bû, wê pêşî bi 20 kîlometreyên din bihata frehtirkirin û di encamê de jî wê hemû herêma Cizîrê ji kurdan bihata xalîkirin û di şûna kurdan de wê ereb bihatina bicihkirin.

**Wê kurdên herêma Cizîrê çawa kiribûna?**

Li gor vê plansaziyê wê bêtirê kurdên şêniyên herêma Cizîrê li herêmên ereb bihatina mişextkirin û belavkirin. Heta di dema pêkanîna kembera ereb ya navbera Rojava û Bakur de vê mişextkirin û koçkirinê ta radeyekê pêk anîn jî. Lê belê ji ber ku Rojava ji mêj ve navenda dara kurdayetiyê bû û bingeheke wê ya qewî ya çand û wêjejeniyê hebû li gel hemû pêkanînên wan jî kurd nehatin tunekirin û îro hebûna xwe di asteke bilind de pêşan didin.

## "Armanc tenê kember nînbû tunekirina kurdewarî bû"

**Armanc tenê guherîna demografîk bûyan na?**

Bêguman na. Bi sazkirina kemberan re guherîna demografîk qonaxa yekem a projeya wan bû. Li dû vê qonaxê qonaxa duyem ya guherîna navên gund û bajarok û bajarên Rojava bûn. Li pey vê jî qonaxa sêyem a zextên li ser kurdan a erebkirina navên kes û hemû hêmanên çandî û folklorî yên kurdî bû. Yanî em dibêjin pengava 'Kembera Ereb' an jî bi navkirina Rojavayiyan 'Zinara Ereb), lê belê ev pengav bi kemberê sînordar nînbû. Bi tevahî tunekirina hemû nîşaneyên kurd û kurdewariyê bû. Bi kemberan dixwestin ku xeteke ereb a tampon di navbera perçeyên Kurdistanê de deynîn û her wiha di hundur de jî bi qedexekirina hemû hêmanên kurdî helandina kurdayetiyê bû.



**Di nav kurdan de nîqeşeke veşarti ya xwegihandina Derya Spî heye. Gelo li herêma pişt çiyayê Kurmênc a li aliyê Lazqiye kurd hene?**

Li Herêma Laziqiyê û taybet li deverên Çiyayê Kurmênc yê aliyê Laziqiyê hê jî kurd hene û bi kurdî dipeyivin. Dema min li ser guherînên demogafîk lêkolînên xwe dikirin, min li wê herêmê xwe gihand şêniyên kurd jî. Ji bo ku axa xwe biparêzin û rizgar bikin ji me xwestin ku em alîkariya wan bikin. Hin ji gundên kurd jî xwe bi rêxistin kirine komên çekdar damezirandine û li dij rejîmê û Îslamiyên tûndwer şer dikin û xwe diparêzin. Dixwazin erka xwe ya kurdperwerî bi cih bînin û li gel Kurdên Rojava pêwendî saz bikin. Em hê jî li gel wan di diyalogê de ne, lê mixabin hêza me ne di wê radeyê de ye ku em dikaribin bi rengekî bala alîkariya wan bikin. Çend gundên ku rizgar kirine û diparêzin hene, lê gundên wan ên ku hê jî di dest rejîmê de ne û bi zilma rejîmê re rû bi rû ne hene.



## "Mele Mistefa got bila ereb herin ser gorên kalên xwe"

Bi raya te, veşartî be jî armanceke hêzên kurd ên wek PYD, ENKS, Herêma Kurdistanê û PKK'ê ya kurd xwe bigihînin Derya Spî heye?

Armanceke wan a veşartî heye yan tune ez nizanim. Lê belê di gellek nexşe û belavokên xwe de kurd xwe digihînin Derya Spî û dibêjin Kurdistan heta Derya Spî heye. Lê di doza xwe de û bi aşkere yek ji hêzên kurd jî nabêjin ku em dixwazin û hewl didin ku xwe bigihînin Derya Spî. Bêguman sedemên vê yekê hene. Ji ber ku heta niha, hîna garantiya ew herêmên ku niha di destê kurdan de ne tune ye û ne diyar e ku wê di siberoja nêzîk de encameke çawa derkeve holê. Her wiha heta niha hê kurdan kantona Efrînê bi kantonên din ve grê nedane û zehmet e ku bê grêdan. Bi raya min kurd ji vê yekê re hê ne amade ne. Lê wek armanc ez dikarim bêjim ku hemû kurd dixwazin ku sînorê Kurdistanê bigihîje Derya Spî. Li ku derê dibe bila bibe divê aliyên kurd ji Kerkûkê heta Dêrsimê û heta Derya Spî berjewendiyên mezin ên kurdan bixwazin û biparêzin. Çima kurd îro ji Kerkûkê sûdeke mezin werdigirin? Ji ber ku Mele Mistefa Barzaniyê nemir û heta Mesûd Barzanî tu carî ji ya xwe nehatin xwarê û Kerkûkê wek dilê Kurdistanê xwestin û bi dest xistin. Serokdewletê Berê Evdilkerîm Qasim ji Mele Mistefa re dibêje; 'Kerkûk bajarekî ereb e û divê kurd doza Kerkûkê nekin.' Mele Mistefa jî jê re dibêje; 'Baş e, nexwe Kerkûk bajarekî ereb e, bila hemû kurd û erebên Kerkûkê biçin ser gorên kal û pîrên xwe fatîhayek bixwînin.' Siyaseta kurdewarî ku em qala wê dikin ev e. Li ku derê mafê kurdan hebe divê kurd doza wî mafî bikin da ku di siberojê de sûd ji siyaseta xwe wergirin.

**Ger em bêne ser rewşa niha, li Sûriyeyê rewş çawa ye?**

Niha li Sûriyeyê rewş pir xerab e. PYD, li ser xeta Îran û Sûriyeyê ye û ENKS jî bê derfet e ku dikaribe li hember polîtîkayên nebaş raweste. Her wiha pêwendiyên kurdan li gel Neteweyên Yekgirtî(NY) û dewletên mezin ên Ewropa û Amerîka lawaz in. Raste, Amerîka hevkariya PYD'ê dike, lê belê ji bo ev hevkarî biguhere şêweyeke stratejîk, divê PYD xwe ji xeta Îran û Sûriyeyê dûr bixe. Ger ku PYD vê yekê bike wê pêwendiyên wê û ENKS'ê jî baş bibin û wê derfet çêbibin ku di gellek xalan de bêne cem hev.

## "RHK'ê di qada navneteweyî de xwedî roleke mezin e"

**Li ser siyaseta Rojava rola Rêveberiya Herêma Kurdistanê(RHK) çiqas heye?**

Di qada navneteweyî de û li gel dewletên hêzdar ên dinyayê roleke mezin ya RHK'ê û Serokê wê Birêz Mesûd Barzanî heye. Dîsa jî RHK'ê ne dewlet e û ji ber vê yekê nikare biryarên mezin bide û pêk bîne. Çi bike jî bi alîkariya van dewletên hêzdar dike. Li gel hemû van hevsengiyan jî, dewletên hêzdar grîngiyeke mezin ku nêzîkî asta dewletekê ye didine RHK û Barzanî û nîşan didin ku ji bo siberojê wê li gel RHK'ê pêwendiyên xwe di asteke hevkariya stratejîk de bidomînin û niha jî wê yekê dikin. Ev yek vê şanî me dide ku di derbarê Sûriyeyê de jî, wê RHK'ê bibe xwedî gotin.

## Piştî hatina Rûsya ya Sûriyeyê û guherînên herêmê Amerîka jî hinek bi hişê xwe hat û dest bi hin hewldanên nû kir. Di vê çarçoveyê de hatina Rûsya ji bo kurdan tê çi wateyê?

**Hatina Rûsya, hatina hawara Rejîma Baasê ye û alîkariya rejîmê ji bo me ne baş e.**

**Çima ne baş e?**

Ji ber ku tu karekî xerab ku rejîmê li dij kurdan nekiribe tune ye û di van şertûmencan de hê jî dike. Niha jî me dikuje û mafê me nasnake. Hê jî negotiye ku kurd gellekin û mafê wan heye ku çarenûsa xwe diyar bikin. Beşar Esad, piştî rizgarkirina Kobanê çend gotinên kir lê ew jî ne gotinên ciddî bûn ku mirov baweriyê pê bîne. Berî her tiştî xala ku gellan li gel hev dihêle û mafê wan destnîşan dike destûr û yasayên wê ne. Yasa li aliyekî heta niha qala yasayan nekiriye. Bi ser de hê jî tade û eziyeta xwe ya li kurdan didomîne. Kurdên ku ne pê re be rastî zext û pêkanînên wê yên tûndî dibin. Li gel ku Kanton ji bo gelê kurd mafekî pir hêsan e jî, heta niha negotiye Kanton baş in û ez ê wan nas bikim. Di rewşeke wiha de em ê çima bi rejimê re bin û hevalbendî û alîkariya wê bikin. Di vê qonaxa ku desteng e û di bin xeteriyeke mezin de ye jî dîsa kurdan nabîne

## "Tenê dewletên mezin dikarin çareser bikin"

**Ki dikare çareseriyê pêk bîne û rola kurdan çi ye?**

Dewletên mezin û yên dor û mador hemû bi awayekî rastexwe yan ne rastexwe li Sûriyeyê ne. Lê belê aloziya li Sûriyeyê bi polîtîkayên ku heta niha hatine meşandin çareser nabe û ger ku ev polîtîka bi heman şêweyê bidomin wê gelên li Sûriyeyê zêdetir tengezar bibin û wê penaberî û mişextî, êş û azar hin zêdetir bibin. Mixabin ku dewletên mezin ên wek DYA, Rûsya û li ser çareseriya şerê navxweyî yê li Sûriyeyê rêkeftinekê peyda nekin, wê ev alozî hin dijwartir bibe; Lewre ev alozî û şer ji kurd, ereb û gelên din ên li Sûriyeyê mezintir bûye û bûye pirsgirêkeke mezin a dinyayê. Ji ber vê yekê mixabin, tenê bi destê gelên Sûriyeyê çareseriyeke mayînde peyda nabe, çimku ev mesele ji wan zêdetir bûye.

Reyhan Akgün



## Bebikên tûpî:
# Hêviya malbatên bê zarok

Pirsgirêka nezayînê, pirsgirêkeke civakî ya mezin e ku di van salên dawî de bêtir derdikeve pêş. Lê belê malbatên ku zarokên wan çênabin êdî dikarin dev ji vê daxwaza xwe bernedin; Lewre bi rêya bebikên tûpî dikarin bibin xwediyê zarokan. Rêbaza bebikê tûpî ku dikare malatan bike xwedî zarok, di van salên davî de li Bakurê Kurdistanê gelek bi pêş ketiye. Mêrên ku zarokên wan çênedibûn û 2-3 caran dizewicîn, êdî nazewcin, lewre bi vê rêbazê tedawî dibin û dibin xwedî zarok. Bijîşk Zekî Akkum da zanîn ku nebûyîna zarokan ji sedî 40 ji mêran ji sedî 60 jî ji nexweşînên jinan pêk tê û di vê babetê de temen jî pir girîng e.

**Ji sedî 15 malbat nikarin bibin xwedi zarok**

Di vê serdema teknolojîk de, bi guherîna îqlîm û kêmbûna adanên sirûştî re hejmara malbatên ku zarokên wan çênabin roj bi roj zêdetir dibin. Kurdên ku dereng beşdarî jiyana bajarvanî bûn û ji nişk ve bi çerxên teknolojiyê û encamên wê re rû bi rû man, êdî serê wan bi encamên vê jiyana nû re jî rû bi rû dibin. Bijîşkê Navenda Beşa Zayînê ya Nexweşînên Jinan Zekî Akkum'ê ku ji sala 2002'an ve li ser bebikên tûpî dixebite, di derbarê vê babetê de me agahdar kir. Akkum destnîşan kir ku bebika tûpî ya yekem a Amedê di sala 2004'an de hatiye dinê. Akkum diyar kir ku kesên zarokên wan çênabin û dixwazin bibin xwedî zarok dikarin serî li wan bidin. Akkum got: "Welatê me jî tê de, li hemû dinyayê ji sedî 15 malbat nikarin bibin xwedî zarok. Jin û mêr piştî têkilaya bi pergal ger ku nebin xwedî zarok divê muayene bibin. Li gor cureyên pirsgirêkên tenduristî hin malbat, bi rêbaza bebikê tûpî,hin jî bi tedawiyê dibin xwedî zarok." Akkum diyarkir ku di pêvajoya dermankirinê de divê bijîşk rêbaza herî bi bandor, hêsan û erzan bi kar bîne û dom kir: "Rebaza duyem jî ew e ku heta derfetên tedaviyê hebin divê dê û bav bêne tedawîkirin. Rêya dawî jî rêbaza bebikên tûpî ye." Akkum anî ziman ku lêkolînên wan ên salên dawî destnîşan dikin ku di malbatên ku serî li wan didin de tu pirsgirêk tune ne. Akkum got: "Ger ku pirsgirêk hebin, em li gor pisgirêkê tedawiyê pêktînin. Sedem tunebe jî ji bo ducanîbûnê em dû salan disekinin ku bi rêya xwezayî bibin xwedî zarok. Di dawiya 2 salan de ger ku hê jî zarokê wan çênebe, em tedawiyê pêşniyaz dikin. Egera dûcanîbûnê di nav 2 salan de, ji sedî 25 dadikeve ji sedî 2'yan. Ev egerî piştî heft salan jî dadikeve ji sedî 1'î û ji ber vê yekê em piştî du salan tedawiyên pêvist didin destpêkirin."

**Divê nexweşî zu bê teşhiskirin**

Di derbarê teşhîskirina pirsgirêkê de jî Akkum anî ziman ku pirsgirêken nezayînê bi du awayi têne tedawîkirin û got: "A yekem, derzîkirin, a duyemîn jî bebike tûpi ye. Di ya yekem de malbat di sê qonaxan de derbas dibin. Ger ku disa jî jin dûcanî nebin, piştî derzîkirinê ew derbasî tedaviya bebikên tûpî dibin". Akkum anî ziman ku ew êdî rêbaza derzîkirinê bi kar nayînin; Lewre ev rêbaz bi qasî rêbaza tûpî bi bi kêr nayê. Zekî Akkum di derbarê nexweşiyên ku dibin sedemên bê zaroktiye de jî da zanîn ku li heremê pirsgirêka ku herî zêde tê ditin pirsgirêkên înferktîf an jî pirsgirêka spermê ya mêr e. Akkum got: "Li heremê di nav mêran de pirsgirêka spermê zêde ye û ev jî bêtir ji ber bandora pirsgirêkên aborî ya li ser derûniyê peyda dibe. Li heremê pirsgirêken aborî û civakî, bi xwe re gelek nexweşiyan jî tînin. Nexweşiya sereke jî nebûna testîsên jêrîn e. Ev nexweşî dema ku zarok tê dinê destpêdike. Ger ku zû bê teşhîskirin û di nava salekî de bê tedawîkirin ji holê radibe; Lê li hereme ev tişt tuneye. Carinan heya zewacê nayê tedavîkirin." Akkum da zanîn ku nexweşiyeke din a girîng jî binguhk e, di zaroktiyê de ger ku zarok bi vê nexweşiyê bikevin, spermên wan kêm dibin. Akkum got ku ev kes piranî nabin xwedî zarok. Akkum anî ziman ku jin jî bi heman pirsgirêkan re rû bi rû ne, du nan jinan de nexweşiya ku zêdetir tê ditîn nexweşiya pervîk înflamator a ku piştî îltihabê tûpên dûcaniyê dixitimîn rû dide. Ger ku di tûpên malzarkê de hatibe girtin, ji bili rêbaza bebikê tûpî tu rê li pêşiya wan namîne.

**Dema zarok cênebuya mêr carek din dizevicîn**

Akkum di derbarê çareserkirina pirsgireka dûcanîbûne de got ku ew bebikên tûpî li hemû kesan pêşniyaz nakin; Lewre ew karê herî dawî ye û ger ku malbat neçar bimînin, divê serî li vê rêbazê bidin. Akkum got: "Wek bijîşk berpirsiyariyên me hene. Biryardayîn, pêşniyara tedawî û bi destxistina encamê ji bo me grîng e. Ya herî grîng jî ew e ku em prsgirêkê bibînin û li gor wê tedawî bikin." Akkum anî ziman ku di warê qebûlkirina tedaviyê de pêşketinek mezin heye, berê pirsgirêk her bi jinan ve dihate giredan û mêr tafilê dîsa dizewicîn, lê niha ne wisa ye, mêr jî êdî deng dernaxin û tedawî dbin. Akkum got: " Sedemên çênebûna zarokan ji sedî 40 ji ber mêran û ji sedî 60 jî ji nexweşiyên jina pêk tê û temen jî sedemek girînge."

Di salên 2000'an de li hemû cihanê, ji bo çêkirina bebikên tûpî, ji sed malbatî tenê 15 malbat tedawî dibûn. Akkum di vê derbarê de got ku nezanibûn, buhayên wê giran in û tiştê herî grîng navendên dermankirinê tenê bajarên mezin bûne, ji ber vê yekê malbat, nekarin biçin cîhê din. Akkum got ku êdî li navçeyan jî nexweşxaneyên bebikê tûpî hene.

"Welatê me jî tê de, li hemû dinyayê ji sedî 15 malbat nikarin bibin xwedî zarok. Jin û mêr piştî têkilaya bi pergal ger ku nebin xwedî zarok divê muayene bibin. Li gor cureyên pirsgirêkên tenduristî hin malbat, bi rêbaza bebikê tûpî,hin jî bi tedawiyê dibin xwedî zarok."

**"Teşwîqên dewletê têra debara navendan nake"**

Akkum da zanîn ku hejmara malbatên ku dixwazên bi vê rêbazê bibin xwedî zarok zêdetir dibin, wan ramana ku kurd nikarin vî karî bikin pûç kirî ye û dom kir: "Ji ber vê yekê êdî serlêdan pir in. Di 2000'an de di nava mehekî de 40 serlêdan çêdibûn, lê niha ew hejmar ji sedî zêdetir bûye. Pirsgireka herî mezin buhayê vê tedawiyê ye. Berê bi rêya Dezgeha Parastina Civakî(SGK) ev rêbaz bûha bû, lê niha daketiye 1200 lirayî. Li nexweşxaneyên taybet buhatir be jî Ewropayê erzantir e. Dewlet dixwaze her malbat bibe xwedi zarok, lê divê ev tedawî erzantir bibe. Ji bo malbatên ku ji bilî vê tedawiyê tu çareyek wan nemaye, divê şertên raporê bêne sererastkirin. Bi teşvîka dewletê navendên bebikên tûpî nikarin debara xwe bikin.

**"Pişti 20 salan bû xwedi zarok"**

Akkum da zanîn ku ji Başûrê Kurdistanê jî nexweşên wan hebûne, lê pişti 7 Hezîranê ku pevçunan destpê kir êdî Başûrî nayên. Akkum got: "Hin kes dermanê bi 2 hezar û 500 lîre dikirîn, lê ji ber qedexeya derketina kolanan nikarin werin. Jixwe yên ku li navçeyan dimînin ji ber vê rewşê ditirsin û nayên an jî hatina xwe taloq dikin." Akkum di derbarê nexweşekî xwe de agahi da ku ew piştî 20 salan bûye xwedî zarok û got: "Nexweşa min M.G niha 41 salî ye. 27 sal e zewicî ye. Di malzaroka wê de dû kîs hebûn. Ji ber vê yekê zarokên wê çênedibûn. Me bi emeliyatekê ew kîs jêkirin. Piştre me dest bi tedawiya bebikê tûpî kir. Piştî tedawiyê yek xerzek wê çêbû. me ev embriyo transfer kir û dûre dûcanî bû. Niha keçike wê xweşik heye."



Tekoşîn Kew



# Li ser gorên ermenan daşir tê avakirin

"Divê dewlet li mîrateyên dîrokî xwedî derkeve. Ne ji bo ermeniyan, ji bo dîroka erdnîgariya xwe û dewlemendiyên olan ya li dewleta xwe. Jixwe ew dêr êdî mizgeft e, li ber wê mizgeft jî avakirine. Lê dîsa jî dêrê nadine xwediyê wê û bi navê mizgeftê wisa vala dihêlin."

Dema ku mirov li qala herêmê serhedê dike ewilî bajarê Qersê tê bîrê. Qers, bajarekî ku ji mêj ve malevaniya gelek şaristaniyan kirî ye û ji ber vê yekê jî xwedî dîrokeke dewlemend e. Bi van şaristaniyan re bûye xwedî gelek berhemên dîrokî û ew berhemên dîrokî her diçe bêxwedî dimînin. Yek ji van berheman jî Katedrala 12 Hewariyan e. Ev Katedrala 12 Hewariyan ku di sedsala 10. de hatiye çêkirin paşê veguheriye û bûye mizgeft niha jî bi navê Mizgefta Kûmbetê ji bo ayînên olî terxankirî ye, lê belê tu ayîn lê nayêne kirin. Şêniyên derdora mizgeftê li mizgefta Hesen Harakanî ayînên xwe pêk tînin. Li navenda Qersê katedrala 12 Hewariyan a ku navê xwe ji 12 nexşên ku li quba wê hatine xemilandin stendiye, di dema Kral Bagrat Abas de hatiye çêkirin. Lê belê li ser hewşa wê ku goristanek kevn ku gorên dû keşeyên grîng jî di nav de heye, îroj daşir tê avakirin. Di kolana esasê vê daşirê de hestiyên mirovan derketin û ev yek bû cihê nerazîbûna dîroknas û pisporên dîroka hunerê.

**Dîroka Katedralê**

Di sedsala 10. de dîroknasê ermen Stefanos Asogîk di derbarê Kral Bagrat Abas de wiha gotiye: "Wî li Qersê ji kevirên bi polan kurkirî Katedralekê ava kir. Quba wê mîna bihuştê xemilandî ye. Ananîa li vê katedralê keşe tî kiriye." Ji ber ku Ananîa di navbera salên 943 û 967'an de jiyaye, ev jî tê wê wateyê ku katedral beriya sala 943'an hatibe çêkirin û navê wê jî wê demê Xoşewîst Apotres bûye. Katedral di dema Selçûkiyan de ji destê rûsan hatiye derxistin û demek dirêj vala maye. Di 1579'an de Osmanî vê katedralê dikin mizgeft ta ku rûs di sala 1877'an de Qersê careke din bi dest dixin. Rûs vê carê katedralê dikin Dêra Ortodoksya Rûsa û di heman salê de dêrê restore dikin. Piştî restorekirinê artêşa rûs, katedralê wek baregeheke leşkerî bikar anî ye û di 1879'an de bi navê Katedrala Serferîşte Mîkaîl bi şahiyekê ji nûve dest bi xizmetên ayînî dike. Piştî vê pêvajoyê ev katedral di pîrozbahiyên olî û leşkerî de tê bikaranîn.

**Gotegotên li ser katedralê**

Dîroknasê ermen Vardan Vardapat di derbarê katedralê de di nivîsên xwe de qala gotegotên balkêş dike û agahiên xwe wisa tîne ziman: "Kral Bagrat Abas, katedralê dide çekirin û di heman demê de jî fermandarê qafqasiyên Maveraî Sarmatan Ber, bi artêşa xwe hatiye nêzîkî çemê Gurê û dibihîse ku Kral Abas bi çêkirina katedralê mijûle, leşkerekî dişîne cem wî û vê axaftinê pê dide gotin: "Bizanibe ku divê tu katedrala xwe bi yasayên min kalketonê çêbikî û ez ê jî erê bikim" lê belê Kral Abas li hemberî vê yekê radibe û bi artêşa xwe êrîşî wan dike û qafqasiyan têk dibe. Piştî êrîşê wan tîne Qersê Kral Abas katedralê şanî fermandarê qafqasiyan dike û jê re dibêje: " xweşikbûna herî dawî ya tu bibînî bila ev katedralbê ku tu ji bîrnekî û di hişê te de cîh bigire" û çavê wî derdixe. Piştî demeki bi bergidana pereyek mezin û soza ku edî nayê Ermenîstanê, fermandarê qafqasiyan serbest berdide." Her wiha çend gotegotên din hene ku bêjerên wan ne diyarin û her kes li gorî xwe şîrove dikin.

**Guherîna katedralê**

Qers, di sala 1918, piştî encamdana şerê cîhanê yê yekem û şoreşa sosyalîst a Rûsyayê , ji alî Rûsyayê ve tê valakirin. Piştî ku Komara Tirkiyeyê tê damezirandin ev katedral vediguhere û dibe mizgeft. Piştî salekê ku Osmanî têk diçe katedral ji alî ermenan ve dîsa vediguhere dêrê. Lê belê di 1920'an de carek din dikeve destê Komara Tirkiyeyê. Di navbera salên 1960-1970'an de dewleta Tirkiyeyê derê dike kevnarxane. Piştî kevnarxaneyeke nû tê çêkirin kevnarxaneyê bar dikin û dêrê vala dikin. Piştî demeke dirêj vala dimîne, di 1999'an de dîsa dest bi xebatên veguhertina mizgeftê dikin. Ji sala 1999'an û heta niha jî bi navê Mizgefta Kumbetê tê bikaranîn. Di demê borî de gelek nîqaş li ser mijara ku mizgefte an dêr e hate kirin. Gelek caran ku ev nîqaş di nav civak û rexistinên sîvîl, walîtî û şaredariya Qersê de hatiye kirin.



**"Li ser gorên Keşeyan daşir tê avakirin"**

Her wiha rewşa dêrê an jî mizgefta Kumbet niha jî ne başe û di bin xetereya ku li hewşa wê li ser gorên keşeyan bi çêkirina daşirê re rû bi rû maye. Di derbare vê babetê de Pîsporê Mîrateyên Çandî Faruk Torunoğlu pirsên BasNûçe'yê bersivand. Torunoğlu da zanîn ku li qada ku dêr û Mizgefta Hesen Harakanî heye, bi piştgiriya Gerînendehiya Giştî ya Weqfan, di salên borî de xebatên peyzajê yên katedralê hatine kirin, îsal jî di hewşa wê de dest bi çêkirina daşirê kirine, lê belê ev daşir ne ji bo katedralê, ji bo mizgefta Hesen Harakanî tê çêkirin û jixwe daşira katedralê heye. Torunağlu got: "Ger pirsgirêk di daşira mizgeftê de hebe, divê ev daşir bêne nûkirin. Ji aliyekî din ve jî dema çêkirina daşiran, ji ber kolana esasê daşiran û axê derdixin dibe ku erd bişemite û dêr biheje. Ev pir xeter e."

Torunoglu anî ziman ku beriya 30-40 salan, li hewşa dêrê santrala elektrîkê çêkirine û ji bo santralê jî hewz çêkirine û dom kir: "Ez bawer dikim ku ew gorên keşeyan di vê demê de bi zanebûn an jî bi nezanî hatine xerakirin an jî ziyan dîtine. Ev yek ji bo mîrateyên çandî derbeke zêde xeter e û nerîna dirokî jî xeradike. Beriya ku daşir bêne çêkirin, dikaribûn di wêneyekî de Mizgefta mezin, Mizgefta Ewlîya ya Qela Qersê û dêrê bi hev re bidîtina. Tiştê ku xwestine kirine û êdî di wî wêneyê ku hûn dixwazin van berheman bi hev re bigrin, hûnê daşirê jî tê de bibînin." Torunoglu ragihand ku ev daxuyaniya wî ya rast e û ew bawer dike ku wê BasNûçe wê rasterast biweşîne.

**"Parastina mîrateyên çandî erka herkesî ye"**

Rêveberê Weqfa Dêra Ermen a Surp Gîragos Gafûr Turkay jî di derbarê mijarê de diyar kir ku gelek dêr û warên ermeniyan di rewşa Katedrala 12 Hewariyan de ye û got: "Divê mirov ji bo mîrateyên çandî û dîrokî rêzê bigrin. Çi dêr û çi mizgeft, divê me li hemû avahiyên wiha yên dîrokî xwedî derkevin. Ew tiştê ku hatiye serê Katedrala 12 Hewariyan tiştekî ne rast e û ew tişt ji bo ku desthilatdar tinazên xwe bi pêkhateyên olî û neteweyî bikin hatiye kirin. Di hişê wan de ev hatiye bi cîhkirin. Di hemû olan de wargehên pîroz ji bo ku gel bi dildarî û bêtirs xwe li wan bigire û ayînên xwe pêk bînin pir giring in. Ev bûyera Katedrala 12 Hewariyan pêk hatiye, ger ku bihata serê mizgeftekê jî, min ê heman bertekê nîşan bida. Civaka ermeniyan li Qersê hebe yan tune be, ev ne grîng e. Divê dewlet li mîrateyên dîrokî xwedî derkeve. Ne ji bo ermeniyan, ji bo dîroka erdnîgariya xwe û dewlemendiyên olan ya li dewleta xwe. Jixwe ew dêr êdî mizgeft e, li ber wê mizgeft jî avakirine. Lê dîsa jî dêrê nadine xwediyê wê û bi navê mizgeftê wisa vala dihêlin. Bi rastî ez pir bi vê bûyerê aciz bûm. Gelo dibe ku li ser goran daşir bêne lêkirin? Ez vê yekê bi tûndî şermezar dikim. Hêvîdar im ku ev şaşî neyê kirin."

Rihan Roj

# Tekstên şanoyê di pêşbirkê de



Yek ji gringtirîn kêmasiya şanya kurdî ya niha peydakirina tekstên kurdî ye. Pêşbirka tekstên şanoyî ya kurdî ji bo vê kêmasiyê derfetên nû dabîn dike. 6. Pêşbirka tekstên şanoyî yên kurdî ya îsal vê hêviyê geştir dike. Pêşbirka Tekstên Şanoyî ya Kurdî ku her sal li ser navê Abdurrehîm Rehmî Hekarî ku di sala 1918'an de yekem leystika şanoya kurdî ya bi navê Memê Alan nivîsandiye tê birêvebirin ji alî Şanoya Bajar a Şaredariya Amedê ve hate destpêkirin. Şanoya Şaredariyê ji bo pêşketina nûseriya tekstên şanoyê dixwaze vê pêşbirkê veguherîne pêşbirkeke neteweyî û bi vê mebestê tê xwestin ku îsal ji perçeyên din ên Kurdistanê jî beşdarî bêne kirin. Hevserokê Derhêneriya Giştî ya Hunerê ya Şaredariya Amedê Ruknedîn Gul diyar kir ku îsal serlêdan ji salên berê zêdetir bûne û bi vê pêşbirkê ew hêvî dikin ku tekstên şanoyî yên perçeyên Kurdîstanê bînin cem hev.

**Pêşbirka tekstên şanoyî destpê kir**

Hevserokê Derhêneriya Giştî ya Hunerê ya Şaredariya Amedê Ruknedîn Gul, di derbarê Peşbaziyê de diyar kir ku ev 6 sal in xelat li ser navê Ebdurrehîm Rehmî Hekarî ku di sala 1918'an de ji bo Govara Jîn şanonameya Memê Alan nivisiye tê birêvebirin. Gul da zanîn ku di destpêkê de wan tenê ji Bakurê Kurdîstanê û ji bajarên Tikiyeyê tekstên şanoyî wergirtine, lê di sala duyemîn de ji ber ku di jûriyê de kesekî Başurî hebûye berhemên Başûriyan jî tevli pêşbirkê bûne. Gul destnîşan kir ku taybetiya vê pêşbaziya 6. ew e ku di jûriya wê de ji çar perçeyên Kurdistanê pisporên şanoyê û tekstên şanoyê tê de hene. Gul wiha dom kir: "Armanc û heviya me ew e ku ev Pêşbirka Tekstên Şanoyê bibe pêşbirkeke navneteweyî. Bi rastî jûriya me ji kesên hêja hatine hilbijartin. Yek ji wan Diktor Qotbedîn Sadeqî ye ku niha li Tahranê mamosteyê zaningehê ye û ne tenê di nav şanoya Rojhilat da di nav şanoya Farisî de jî kesekî navdar e. Gazî Bamernî jî li Dihokê mamosteyê zaningehê ye. Şalîko Bêkes kedkareki hêja yê şanoya kurd e ku li Moskovayê dijî, Kawa Şêxê li ser navê Rojava di juriyê de cîh digire. Ev jî hem nivîskarê şanoyê ye hem jî şanoger e. Leyla Batgi hevala me ya leystikvan e. Ew jî li ser navê me di jûriye de cih digire."

**Ji çar perçeyên Kurdistanê tevlûbun dê çêbibe**

Gul amaje pê kir ku pêşbirk her ku diçe mezintir dibe û îsal bi beşdariya ji çar perçeyên Kurdîstanê wê rengîntir bibe. Gul da zanîn ku ew ê endamên jûriyê li bajar û heremên xwe daxuyaniyan bidin, pêşbirkê bidine nasîn, berheman kom bikin û ji wan ancemekî derxînin. Gul da zanîn ji girtîgehan jî gellek berhem beşdarî pêşbirkê dibin, dû salên dawî berhemên ku dibin yekemîn ên girtîgehan in, wan tekstên girtîgehan hatine, heta niha dû leystik derxistine ser dikê û ji alî temaşevanan ve bi kêfxweşî hatine pêşwazîkirin. Rûknedîn Gul anî ziman ku di 2011'an de leystika Jana Zar ya bi navê 'Qeyt' bûye yekemîn û wan vê tekstê wek leystik xistiye repertûara xwe.

"Armanc û heviya me ew e ku ev Pêşbirka Tekstên Şanoyê bibe pêşbirkeke navnetewî. Armanca me ew e ku her sal ji wan tekstên şanoyê yek an jî dû berheman têxin repertuara xwe. Berhemên ku tên dram, komedî, çîrokên dîrokî ne. Mijarên gelek berfireh hene. Sala borî ji Bakur û bajarên Tirkiyeyê 30, ji Başûr 15 berhem beşdar bûbûn."

Gul, armanca vê xebatê wiha vegot: "Armanca m ew e ku her sal ji wan tekstên şanoyê yek an jî dû berheman têxin repertuara xwe. Sala borî teskta şanoyê ya bi navê 'Destê 6 tilî' ya Ahmet Osmanê ku li girtîgaha Dîlokê ye bû yekemîn û me ew xiste repertuara xwe. Berhemên ku tên dram, komedî, çêrokên dîrokî ne. Mijarên gelek berfireh hene. Sala borî ji Bakur û bajarên Tirkiyeyê 30, ji Başûr 15 berhem beşdar bûbûn."

**"Tekstên şanoyê yên kurdî kêm in"**

Gul destnîşan kir ku tekstên leystikên şanoyê yên ku têne hilbijartin wek pirtûk têne çapdikin û yên din jî ji bo komên ku bixwazin wan bikar bînin di arşiva Şanoya Bajêr de têne tomarkirin. Gul wiha domand: "Niha em gihiştine armanca xwe û em di asteke baş de ne. Di navbera par-





Ruknettin Gül

çeyên Kurdistanê de danûstendinên me hene û her ku diçe baştir dibe. Lê tiştê ku dertikeve pêş ew e ku li her perçeyan jî kêmasiya nivîsandina tekstên şanoyê heye." Gul anî ziman ku ji ber kêmasiya teskstên kurdî ew bêçar dimînin ku her sal klasikek biyanî ji bo repertuwara xwe wergerînin kurdî.

**"Ji bo berhemên kurdî derfet kêm bûn"**

Rûknedin Gul diyar kir ku ji bo hemû beşên wejeyî yên kurdî heta niha derfet kêmbûne, lê niha bi saya sazî û dezgehan derfet baştir bûne û got: "Şano tişteki cuda ye. Dema ku nivîskarek tekstekî binivsîne û ew neyê ser dikê, ev ji bo nivîskar rewşeke ne baş pêk tîne. Îro em dizanin ku tekstekî bê nivisandin tekez wê bê bikaranîn. Êdî gelek komên şanoyê hene û derfetên leystina tekstan jî zêde bûne û ev yek ji bo nivîskaran kelecanekê peyda dike. Me çend caran kargehan vekirin da ku em alikariya şanogeran bikin, lê belê ji ber karûbarên me, em nikarin van karan bi rêk bimeşînin. Heta niha ji bo komên şanoyê tu derfet tunebûn ku ji xwe re repertûwar amade bikin, ên ku derfetên wan hebûn jî ji ber kêmasiyan tekstan nikaribûn leystikên kurdî amade bikin."

**"Perwerdehiya bi kurdî pir xweş bû"**

Rabîa Şîlan Alagoz, piştî ku Navenda Çand û Hunerê ya Cegerxwin webû jiyana wê jî guherî. Alagoz piştî perwerdehiya xwe ya Zaningeha Înonuyê qedand, hem ji bo debara xwe xebitî û hem jî li ber karê xwe, kete nav xebatên hunerî. Alagoz, li ser rewşa xwe wiha peyivî: "Min di 2010'an de dest bi Beşa Şanoyê ya Akedemiya Çand û Hunerê ya Cegerxwîn kir. Ji alîyek ve dixebitîm û ji aliyek ve jî êvaran diçûm akademiyê. Ez pir diwestiyam lê ji ber ku bi zimanê xwe perwerde dibûm, ez nedihêşiyam." Alagoz da zanîn ku ev her du perwerde jî ji bo wê gelek sudwer bûne û dom kir: "Perwerdehiya zanîngehê, bi zimanê tirkî bû. Lê perwerdehiya akademiyê ji bo min pir balkêş bû. Ji ber ku perwerde bi zimanê min bû samîmîtir bû û ji bo min hêsantir bû. Ji ber vê yekê min pir jê hez dikir."

**Hînî kurdî bû û di peşbirkê de bi serket**

Alagoz ani ziman ku dema vê dest bi Akademiyê kiriye xwendin û nivîsandina kurdî nizanibûye û li akademiye hîn bûye û got: "Di 2013'an de dema min serî li pêşbirkê da, min bawer nedikir ku ez ê bi ser bikevim. Di pêşbirka 2013'an de bi leystika bi navê 'Evîna Derwêş' ku min ji pirtuka nivîskar Îbrahîm Osman ya bi navê 'Evîna Mêrxas' feyz stendibû ez beşdar bûm û bûme 3." Alagoz wiha dom kir: "Min Çirokên kurt yên kurdî dixwend lê pîrtuka min a yekêmîn Evîna Mêrxas bû. Bi wê pirtukê min jî listika şano ya bi navê 'Evîna Derwêş' nivisand û şand pêşbirkê û bum 3'min." Alagoz diyar kir ku bi vê serkeftine di xwe de wê hêzê dîtiye û nivîsandina tekstên şanoyê domandiye. Paşê teksteke bi navê 'Deng' nivîsandiye û niha jî xebatên xwe yên nivîsê didomîne. Alagoz got: "Ez ne nivîskarim, lê belê ji nivîsên xwe bengîdar dibim. Ez bi ziman û hestên xwe çanda xwe dinivisînim û ev yek min kêfxweş dike. Bi dayîna wê xelatê mîsyonek dan ser milên min ku ez vî karî bidomînin. Niha jî di koma Dîziya Malîno de cîh digrim. Ji aliyê di ve jî, di Koma Şanoyê ya Şehit Yekta Hêvî a Dicle Firatê de wek leystikvan cih digirim."





Mîr Geverî

Kemal Orgun:

# Pêşeroja şanoya kurd ronî ye



"Huner û hunermend her çiqas çend gav li pêşbe jî, nanê ji hevîrê civakê ne. Erd û ard rewşa hêvîr, hevîr jî rewşa nên diyar dike. Li ser vê rasteqîniyê, em dikarin bibêjin pêşeroja şanoya kurd roniye. Ev pirsgirêkên wê yên di derbarê rêxistiniyê, yên di derbarê wêje û felsefeyê de, îro her çiqas wek tengasiyekî pêşketina wê giran bike jî ewê sibehê werin çareser bibin."

Kemal Orgun, ji salên 90'an heta niha di şono û şanogeriya kurdî de dixebite. Şanoya modern a kurdî di destê Orgun de gihiştiye astek nû û her pêşve diçe. Kemal Orgun, ta niha gelek şano nivîsîne û her viha dı gelek şanoyan de jî wek lîstîkvan cih girtiye. Ji bilî şanoyê jî Orgun, hem nivîskar e û hem jî derhêner e. Kemal Orgun vê heftê jî '21'ê Mijdar'ê' şanoya bi navê ''Dizê bi Tizbî'' li pêşberê hunerezên kurd yên Enqere bû. Kemal Orgun, derbarê şanoya kurdî û li ser şanoya xwe a dawî 'Dizê bi Tizbî' pirsên BasNûçe'yê bersivand.

**Dizê bi Tizbî' çiye, tîp û karekterên lîstikê kîne û armanca vê lîstikê çiye?**

Lîstika Dizê Bi Tizbî komediyeke polîtîk e. Karakterê vê lîstikê dizek e, dizekî xwedî tizbiye. Ew, di nav jiyanê de vê tizbiyê wek perdeyekê bikar tîne. Bi vê perdeyê xwe wek kesekî baş nişan dide û di nav civakê de rûyê xwe yê rastî vedişêre. Metafora tizbiyê perdeye, perdeya li ser rûyê Dizo ye. Bi vê perdeye yên ku sextekaariyê dikin berbiçav dike. Ev di heman deme de lixwe anîneke / îtirafek e. Ji xwe di prologa lîstikê de em vê yeke dibinin. Lîstik, bi hesab û kitêba salane dest pê dike. Salek çiqas dikişine, her mehê çiqas diziye û salalekî dike çi vanan hemûyan hesab dike. Dibîne ku sed milyarên wî kême. Dipirse, "çima?" paşê ji bîr tîne ku wî mehekî rojî girtiye. Dizo nîşanî me dide ku ne tenê bi serê xwe, wek komekî vî karî dikin û mîna rêxistinekî tev diğerin. Ji qalikê dizo derdikeve, dikeve qalikê zanayekî û li ser nivîsê şemaya vê komê xêz dike.

**Te di hevpeyvinek xwe de diyar kiriye ku şanoya kurdî de pirsgireka avakirina tîp/karekteran heye, ev pirsgirek ta niha jî heye an na, Her wiha tîpa Sarya çawa derket holê, çi bondor li ser te çêkiriye, tîpa Sarya ji bo te, tê çi wateyê û Sarya kî bû?**

Rast e, di şanoya kurd de pirsgirêka avakirna qarakter heye û ev pirsgirêk hêjî didome. Gelek sedemên vê hene. Neafirandina wêjeya şanoya kurd, sedema vê pirsgirêkê ya herî girîng e. Elbet her şano di nav jiyana xwe ya civakî de tîp û qarektêrên xwe yên netewî diafirîne û hemû rengên jiyana xwe ya civakî lê bar dike. Ew jî ji wêje û çavkaniya şanoyê xwe diafirîne.

**Mînak; ji saziya dengbêjî, destan, çîrok û hunera vebêjê.**

Li NÇM'ê me karê şanoyê dikir, Nursen İnce jî di nav xebatên govendê de bû. Em du kes hatibûn Kayy-Der'ê, - Ez û Hüseyin Kaytan. Nursen jî çûbû rojnameyê. Li Kayy-der'ê, li çaviyekî jêrzemîn de -ku şeş, heft metre û bê şibak û bê tav bû- me ji nûh ve xebatên şanoyê da destpêkirin û li ser mijara lîstika Govenda Hilo/Sarya, lê hûr bûn. Piştî gelek niqaşan, zincîra bûyaran û qarakter hatin zelalkirin. Huseyîn dest bi nivîsandina tekstê kir û di demeke kin de tekst qedî. Di lîstikê de qaraktereke jin hebû û navê wê Sarya bû. Sarya jineke ciwan, delal û lal bû. Rûyê wê her tim li çiyan bû. Wê bi reqsa xwe dipirsiya û bersiv dida. Reqs zimanê wê bû, laşe wê jî reqs.

Piştî kuştina zilamê wê, reqsa wê tê qedexekirin. Sarya şînê giredide. Lê, piştî tolhildanê careke din reqsa wê destpêdike. Her ku diçe bilind dibe û Sarya wek minminikekê di nav evîna reqsê ku ji êgir e dihele û diçe. Piştî nivîsandina lîstikê wexta ku me rol belav kirin, di nav lîstikvanên me de kesa ku bikaribe qaraktera Sarya'yê bileyîze tunebû. Li ser rêya têlê ez li Nursen'ê gerim. Piştî pêşkeşkirina lîstikê, di sala 1995 de qaraktera Sarya'yê hilda mile xwe û bere xwe da çiyan û tev li refên gerilla bû. Di şanoya cîhanê de tu mînakek weha nîne ku, lîstikvanek rola ku dileyîze hilde mile xwe û di nav jiyana rastî de bileyîze. Taybetmediyeke din a karaktera Sarya'yê heye ku, di şanoya kurd de çare yekem reqs hate bikaranîn. Sarya, hîna ku neçûbû çiyê bûbû Sarya. Paşê me bihîst ku bi çem û çiyan re jî reqisiye û çemûçiyan jî pir jê hezkirine.

**Hûn ji bo pêşeroja şanoya kurdî çi difikirin, kemasiyên çawa hene?**

Pêşeroja şanoya kurd, ne li derveyî pêşeroja gele kurd e. Elbet huner ne tenê jiyana rojane, pêşerojê jî dijî û saz dibe. Pêşeroj ya dûr e lê ew vê dûriyê nêz dike. Huner û hunermend her çiqas çend gav li pêşbe jî, nanê ji hevîrê civakê ne. Erd û ard rewşa hêvîr, hevîr jî rewşa nên diyar dike. Li ser vê rasteqîniyê, em dikarin bibêjin pêşeroja şanoya kurd roniye. Ev pirsgirêkên wê yên di derbarê rêxistiniyê, yên di derbarê wêje û felsefeyê de, îro her çiqas wek tengasiyekî pêşketina wê giran bike jî ewê sibehê werin çareser bibin. Di aliyê pirsgirêkên wê yên teknîkî de ne hevce ye ku ez li ser rawestim. Pirsgirêkên wê yên teknîkî, pirsgirêkên herî sivik in. Wexta ku pirsgirêkin wê yên wêjeyî, felsefî û dîrokî hate çareserkirin, yên din ewê bi xwe werin çareserkirin. Mesele ew e ku şanoya kurd, hîna ji bo pêşketina civakê û ji bo jiyaneke azad û bi rûmet giranbuhayiya xwe rast nedaye famkirin. pirsgirêka herî mezin jî ev e.

**Rexne li ser sazî û dezgeyên kurdî hene, tê gotin ku ji bo çand, huner û zimên, şanoyê derfet nayên pêkanîn, li ser vê yêkê hûn çi dibêjin?**

Di salên dawîn de gelek sazîyên çand û hunere hatin damezirandin. Bi awayekî, xebat jî tên kirin. Damezirandina saziyan elbet girînge lê, ji wê jî girîngtir di van saziyan de rê û rêbazên ku bikar tînin çine, bi kîjan hişmendiyê xwe xwedî dikin û li ser çi esasî dimeşin. Em dikarin bibêjin di vî alî de pirsgirêkên giran hene. Wexta ku di vî alî de pirsgirêkên giran hebin, elbet di aliyê ne çareserkirina derfetan de jî dê neçariyek hebe. Mirov dikare ji bo pirsgirêkên derfetan bibêje, di nav hebûnê de tunebûnî heye. Ne ku derfet tunin. Derfet hene û ji serê heft bavê kes û kûsan jî zêdene. Li ev derfet li cihek, du cih hatiye navendkirin. Rast nayê bikaranîn. Ev yek jî, ruhê şanoyê perçe perçe dike. Lewma di şanoya kurd de ruhek, dilek û fikreke komînalî nayê afirandin. An jî ji bo ku were afirandin ev pirsgirêk sêrî li digerînin û her ku diçe rêya pêşketin û serkeftinê dirêj dike. Lê ev ne qedera şanoya kurd e. Dikare astengiyên ku rê li digire ji holê rake.

**Şanoya kurdî divê xwe li kîjan paşxanê avabike, gelek tekstên biyanî tên tercume kirinji bo kurdî, giyanê van tekstan li kurdî diçe an na?**

Paşxaneya şanoya kurd çavkaniya wê ye. Çavkaniya wê jî stran, destan, çîrok, dîrok û têkoşîna li her çar perçeyê welatê wê ye. Şehîdên şanoya kurd hene. Wek heval Hêvî Şanoger, Yekta, Hêlîn Başak Kanat, Sarya û Sarya Baran. Berî her tiştî divê xwe li vê çavkaniyê bigire. Bi vê çavkaniyê xwe xwedî bike û vê çavkaniyê mezintir, delaltir, şêrîntir û watedartir bike. Reng, deng û tama jiyana gelê kurd, di nav vê çavkaniyê deye. Di navbera çemên Dîjle û Feradê de zaye. Ferat xortekî çeleng, Dîjle jî keçikeke delal û bedew e. Bi hezar salane ku bi herikandineke reqsî diherikin û jiyanê diafirînin. Ev jiyana reqsî dilê şanoya kurd e. Loma, şanoya kurd divê berê li vî dilî xwedî derkev e. Bi pêşxistinê wê biparêze da ku gel bikarê be pê şa bibe. Elbet em ne li derveyî dinyayê ne, divê ji çemên der dorê jî sûd wergirin û bidinê. Lê divê em kilasîkên xelkê ji xwe re nekin qible. Di vî alî de jî, ji bo şanoya kurd çana pirsgirêkê di binve lê dide. Ger em vê pirsgirêkê çareser nekin ne zede, di nav çend salan de şanoya kurd ewê bibe şanoya wergerê.

**Di nava vê heftêyê de li Amedê Mihrîcana Şanoya Kurdî bi rêve diçe. Nêzîkbûna kurdan a hemberê şanoyê hûn çawa şîrove dikin, şano çawa dikare têkeve jiyana kurdan?**

Di nava vê heftê li Amedê mîhrîcana şanoya kurd dest pê kir lê, qasî ku dizanim, lîstikên ku ji Bakur tevlê bûne, hemû werger in. Lewma bersiva vê pirsa te, îsal li ba min nîne. Ya din, jiyan hunera herî mezin e lê îro bê teşeye. Wek rûnê zeytûnê ya li ser avê ye û herkes ber bi xwe ve dikişine. Ne tenê şano, armanca hemû huneran ev e ku ev jiyana heyî bi nûve xwe heyî bike. Huner di vî alî de hemû deriyên ku li ser jiyanê hatiye girtin vedike. Lê şikl û şemalê nadêde jiyanê, jiyanê bi nûve nafirîne; ji bo ku jiyan şikl û şemalê bide xwe û xwe bi nûve biafirîne alîkariya wê dike. Di nav jiyana gele kurd de jî, ji bo ku ev herikîn bi kûrahî destpêbike, divê em dev ji nêzikbûnên rojane berdin. Destgirtineke dîrokî divê ya esasî be.

Ercan Ekinci

### Wênesaz Qader Ahmed:

# Derdora min bi wêneyan ve hatiye pêçan

Di sedsalê dawîn de texrîbata li ser erdnîgarî, rih û derûniya kurdan hatiye kirin bi demê re bûye parçeyek bîra hevpar a kurdan ku dîroka nêzîk, serpêhatiyên takekesî, bişaftinên pirralî, karesatên mezin pêkhatiyên vê texribata domdirêj in. Heta niha kurdan bi nîsbet ji pirraniya gelên din ên cîhanê gellek karesat li ser hesabê bîra xwe ya hevpar tomar kirine.

Komkûjiyê ku heta niha rû dane wekî Qoçgirî, Dersîm, Zîlan, Barzanî, Enfal, Helebceyê û karesatên ku vê taliyê li ber çavên hemû dinyayê qewimîne –Kobanî û Şengal- wekî serencama bi dehan trajediyên ku ji pirr hêlan ve hatine nirxandin, tomarkirin, şîrovekirin, li pêşberê me rawestiyane.

Resim (Wêne) jî wekî qadên din ên hunerê bi awayekî zelal karesatên ku di bîra hevpar û takekesî de hatine tomarkirin; naverok, xêz, reng, xebat, bedewî û kambaxî- bi riya formen estetîk ên weke sembol, metafor û şêweyên vegotinê ve salix dide û weke mûzexaneyeke honakî li ber çavên xwîneran û hunerhezan radixe da ku yê bixwazin pê bihesin jê parçeyek serpêhatiyên janbar werbigrin û bi awayekî bi resmê re bikevin danûstendineke ku ji aliyê wan ve ligel cîvakî û derûnîbûna xwe, hişyarkar e.

25. Mîhrîcana Stenbol a Hûnerê ya Navnetewî di meha Mijdarê de li Navenda Fûar û Kongre ya TÜYAP'e bi mijara 'Govaniya Raborî' ve encam da. Di vê mîhrîcanê de xebatên nêzîke 1000 hûnermendan hatin pêşandin û 150 hûnermend jî bi xebatên xwe ve beşdarê pêşangehê bûn. Ji aliyên hûnerxezan ve bi baldariyakî pirr mezin hate pêşwazîkirin. Her wiha ligel bi panel û semîneran ve di derbar mijara "derfetên govaniyê raborî"de hat nîqaşkirin û nirxandin. Hûnermendê navdar yê Başûrî Osman Qader Ahmed jî bi xêz û wêneyên xwe ve tevlî pêşangehê bû û di derbarê xebatên xwe de ji BasNûçe'yê re axivî.

**"Min jî wekî her kurdekî berê xwe da çiyayan"**

Di mîhrîcana Stenbol ya hûner de hûnermendê kurd Osman Qader Ahmed, bîr û serpêhatiyên xwe wek şahidekî dîdar ew bandorê kûr ku li ser jiyana wî çêbûne bi xêz û wêneyên xwe bal kişand li ser jenosîda Enfal Helebçê. Di derbarê jiyan û paşeroja xwe de Ahmed wiha got: "Ez di sala 1962'an de li şarê Silemaniyê hatim dinê. Dibistana seretayî û navendî min li wir xwend. Paşê li Zanîngeha Sileymaniyê min li ser beşa hûnerê xwendina xwe domand. Di wê serdemê de êrişên tund li ser kurdan hebû. Min navber da zanîngehê û min jî wekî her kurdekî berê xwe da çiyayan û ez çûm beşdarê hêzên pêşmerge bûm. Di wê dema de laşên min li ber bombeyê kîmyewî reş bibû."

**"Wêneyên min vebîr û tecrubeya paşeroja min e"**

Osman Qader Ahmed, şahidî bûyerê û jenosîda Enfalê ye. Vê bûyerê bi dîtin qeydê hafiza xwe kiriye. Ev bûyer, karesat û serpêhatin di hafizaya wî de cih girtiye û bûye ji beşek hebûna wî. Ahmed, di derbarê bîr û paşeroja xwe de ku li ser wênê wî cih girtiye, wiha dibêje: "Wêneyên min piranî ji hafize/vebîr a min, tecrubeya min a paşerojê, wek şahidê dîdar, wek zarokek, pêkûtiya ku di sala 1988'an de bi bûyerên tirsnak encam bû û li ser jiyana min bandorek kûr danî. Bi lodek wêneyan ez tenê hewl nadim ku jenosîdê (Enfal) qeyd bikim lê dinyayek çûyin-hatinên (flashbacks) paşerojê û xewnan, lê di heman demê de lêgerîn/keşf û heta dikarim hîs/kul'ên xwe bidim zanîn bi rêya pêvajoya afirîner. Tu hunermend, ku êş û kulên kesên dinan hîs û parve neke, nikare xebatên acizker biafirîne. Ez wêneyên/xêza xwe wek rojnivîsk bikartînim, çîrokên bikul ku bi wext û fezayê re li pey hev rêz dibin û di mejûya min de olan didin qeyd dikim." Ew dîmenên ku ber çavên wî cêbûne li ser wan dîmenan wiha didome: ". Bedenên ciwanan ji yên pîran veqetiyayî bû, ê mêran ji yên jinan, ê zarokan ji yê xwediyê wan ên ku mal û milkê xwe bi darê zorê li dû xwe hiştine, ku nişkave êdî bêqiymet mane û hatine înkarkirin û ji welêt derxistin û piranî li ber çavên zarokên xwe hatine kuştin."

**"Bûyer her wext di xeyalê min de ne"**

Osman Qader Ahmed afrînerekî xêz û wêneyan e. Kul, êş, keder, evînên xwe û di derbarê serpêhatiyên û hûnerê xwe de wiha dibêje. Ahmed, "Ez ji aliyên wêneyan ve hatime dorpêçkirin; lê bûyer her wext di xeyalên min de ne: siyên rastîn ên fîgurên wêneyan perçekî ramanên min ên rojane ne. Karê wênexêzîyê têrî dide min û bandorek wê ya medîtasyonî heye; xêza min difikirim ku hafizeyek zindî ye, fîgurek sereke ye, an jî di çolistanek bêsînor de lehengek e an jî di welatê min de berwarê çiyayek e- mekanek bêsînor ku piranî di cihê destekî/an, tilîyekê/an an jî perçeyek bedenekê/an pêşkeş dike di terza skeçek neqedandî de, dikeve binê erdê yan jî xuya dike, an jî bitevahî derdikeve holê yan jî wenda dibe.



"Ez wêneyên/xêza xwe wek rojnivîsk bikartînim, çîrokên bikul ku bi wext û fezayê re li pey hev rêz dibin û di mejûya min de olan didin qeyd dikim."

**Sedsala çûyî sedsala mirinê bû**

Her çiqas di jiyana wî de pêkhatina wan bûyeran razînebe jî ew bûyer ji bo hûnera wî dibe sedemek bihêz. Di vê derbarê de Ahmed wiha difikire: "Her çiqas sedsala çû bi her awayî 'sedsala mirinê' be jî – bitevahî tunekirina li Amerîkaya Başûr heta Asyaya Başûr, Ewrûpa, Rûsya, paqijkirinên etnîk yên meşhûr li Afrîkayê- wek şahidek dîdar, bi hevaltiya grûbek biçûk a şervanên azadiyê ku di çiyayên bilind de xwe distrandin, ji bo min tiştek pir zor bû bawer bikim da ku li ber çavên me komkujiyek çêdibe lê em nikarin tiştek bikin. Xewnereşkek zindî bû. Çend kes ji me filitî ku şahidiya înfazên bi hezaran mêr, jin û zarokan bibînin, ku ji wan gelek birih hatin binaxkirin, ji jinên ducanîyan bigrin heta mêrên ciwan û zarokan, û gorên bigirseyî, yek li dû yê din, da ku bikaribin li dû xwe delîlek nehêlin. Ev bûyer, şert û mercên min û derfetên min çavkaniyek domdar a piranî tesewirek acizker didin min lê di heman demê de dibin sedemek bihêz ji bo xebatê. Ji vê tecrubeyê vir ve ez trawmatîze bûm û ev mijar serwerî bitevahî xebatên min ên hunerî bû."

Ji berê de derbarê êş û karesatan hewcedariya mirovahiyê bi vî vegotinê û parvekirinê heye. Hûner ji çavên xwe ji êşên mirovahiyê re nagirin û ji bo daxwaza xêz û wênan ya karesatan, biçûk be jî qadekê terxan dikin. Ev qada bi şahidî, bîranîn, hemhestiyan ve dagirtî, êşên rabirdûyê bi bîra me dixe û wan windabûnê rizgar dike. Ji bo tamirkirin û pakkirina bîra me ya cîvakî hewceyî bi xêz û wêneyên bi vî rengê hene. Heta em bi dîroka xwe ya nêzîk re hevrû nebin û vê dîrokê bi rastbînî di bîra xwe ya îroyîn bi cih nekin, em nikarin êşa kesê mexdûr bibirin.



Osman Qader Ahmed